

6

عومەر پەروا

ژن و مێردی بەشەرهاتوو سواری فڕۆکە ناکات

## Hevserokên KCDê Turk û Tugluk hevdîtinên xwe yên bi Barzanî û Talabanî ji Rûdawê re nirxandin...

10-11




Hejmar / Nr. 122
17 Mijdar / November 2011

# Rûdaw

ÇAPA EWROPA

Rojnameya Kurdên Diyaspora

**Deutschland 1,50 Euro** | Österreich 1,50 | Belgium 1,50 Euro | Danmark 15,00 DKK | France 1,50 Euro | Nederland 1,80 Euro | Norway 15 NOK | Schweiz 2,70 CHF | Sverige 21,00 SEK




## "Ez taqlîda Deşnê nakim“

**Dilber xwedî sê klîpan e û hewl dide ku şêweyekî wê yê taybet hebe. Ji wê yekê jî pir aciz e ku bi taqlîdkirina Deşnê bê tewanbarkirin.** 8

### “Pakkirina namûsê”

Pozjêkirin û porkurkirin weke edeteka ji hezarsala borî dixuyên, lê li Kurdistanê hîn jî awayekî “pakkirina namûsê” ne... 13

### Kurdên Spanyayê

Navên xwaringehên wan kurdî ne û xwe weke balyozên çand û nasnameya kurdî jî dibîn... 12

### Projeyek giring

Xortekî kurd bi rojan ligel Wladîmîr Pûtîn geriya û filmekî dokûmentasyon li ser Pûtîn çêdike ... 6

### DALKURD li Wanê bû

Tîma futbolê ya Kurdên Swêdê DALKURD bi awayê xwe alîkariya mexdûrên erdheja bajarê Wanê kir ... 2

# Eger Beşar Esed hişyar nebe...

4/5


















Great Britain

# Dalkurdê 60 hezar Euro alîkarî gihand Wanê

Fatma Savci



Karmendên dewletê li pêş çapemeniyê PC (komputer) dane zaroken, piştî çapemenî çûye dîsa ji wan standine

Beriya hefteyekê tîma futbolê ya Kurdên Swêdê DALKURD ji bo piştgiriya mexdûrên erdheja Wanê maçek futbolê lidarxist. Di wê maça DALKURDê li hember tîma televizyona swêdî tv 4 de 550.000 Kronê swêdî (60 hezar Euro) gihişt ser hev. Ji bo vê alîkariyê bigihînin destên gelê Wanê, roja yekşêmê (13.11.2011) serokê DALKURDê Ramazan Kizil û siyasetmedara partiya Sosyal-Demokratan û di heman demê de rêvebera Klûba DALKURDê Evîn Çetîn ketin rêya Wanê.

Ji ber hewaya nexweş firokeya wan li Mûşê danî û piştî ku li Tatwanê asê man û rastî erdhejekê jî hatin, Ramazan Kizil û Evîn Çetîn otêla ku lê diman terikandin û çûn li malekê man. Roja sêşemê (15.11.2011) saet 12ê nîvro herdu gihiştin Wanê û alîkarî pêşkeşî serokşaredarê BDPê yê Wanê Beşîr Kaya kirin.

Evîn Çetîn a ku em bi telefonê gihiştinê û me çavdêriyên wê pirsîn, wiha axivî: "Tiştekî gelekî balkêş dibe li vir. Rêxistina Heyva Sor a Tirkiyeyê (Kizilay) alîkariyê nade gel. Li gor ku tê gotin heya niha 125 trilyon pereyên tirkî civiya ye, lê ew vê alîkariyê nadin milet. Em îro li nav çadiran geriyan, min pankartek mezin bi deh metroyî dît. Li ser wê pankartê wiha nivîsî bû, "Tu bi xêr hatî serokwezîrê me" û îmzeya Heyva Sor a Tirkiyeyê li bin nivîsî bû. Hîç ne mîna ku çapemeniya Tirkiyeyê dide xuyakirin e, wexta mirov tê van çadirên ku gelek mirovan bi destên xwe danîne û naylonên nebaş in, mirov fedî dike. Mirov hîs dike ku mirovatiya me hemuyan dikeve bin piyan. Lewra rêxistinek sivîl û ya bi vî navî nabe ku bikeve bin bandora siyasetê û mîna partiyeke siyasî tevbigere. "

## "Kizilay alîkariya tê ji wan didize"

Evîn Çetinê bal kişand ser koçberiya zêde ya ji bajarê Wanê û bi hêrs got: "Dema erdheja yekem çêbû, baweriya gel hîna hebû, hêviya wan hebû ku birînê xwe bipêçin û bi alîkariya hemî rayedar, sazî û gel derman bikin. Lê piştî erdheja dawî êdî yek ji van hêviyan nema. Ji ber ku dîtin bê dewleta Tirkiyeyê û hikûmeta wê ya AKPê çawa bi çavekî dijminayî nêzî wan dibe. Heta saziyên wek Kizilay çawa alîkariya tê ji wan didize. Loma ji sedî pêncî xelkê Wan û Ercîşê bar kiriye. Niha rê ji otomobîlên ku ji Wanê û Ercîşê derdikevin tije ye."

Em dipirsin gelo wek ku tê qal kirin hîna xelkê bê çadir hene an na? Birêz Çetin dibêje: "Dewletê bi rêya çapemeniya xwe belav kiriye ku 40 hezar çadir şandiye bajarê Wanê, lê gel vêya derewîn derdixe û dibêje, encex hezar çadir hatibe. Hîna gelek milet bê çadir e, çadirên hene jî ne li gor vê hewayê ne. Berf dibare û hewayeke gelekî cemidî heye. Ji ber ku milet li gor derfetên xwe çadir peyda kirine, wan ji sermayê naparêzin. Mînak doh bi şev du mirov di bin çadirê de fetisîne, hewl dane ku xwe bi sobeya agir germ bikin, lê fetisîne. "

## PC bekav kirin û paşê kom kirin

Evîn xanimê behsa bûyerek balkêş dike : "Li vir dewlet û saziyên wê yên wek Kizilay li ser êşên milet, li ser mexduriyeta wan polîtîkayê dike. Kesên ku bibin hevalbendên wan dikarin alîkariya wan werbigirin, yên din mehkûmî mirin û sermayê ne. Bifikirin, ji Başurê Kurdistanê 13 tirên bi cil û xwarinê tije ku gelê Başûr kom kiribûn hatin Wanê, lê dewletê dest danî ser wan û nehişt bigihije destê milet. Milet îro qala tiştekî balkêş kirin ji min re, wan got ku dewlet û saziyên xwe bi çapemeniya xwe re tê û şowan dike. Mînak rojekê ji wan hatine û li pêş çapemeniyê PC li zarokan belav kirine. Lê piştî ku çapemenî çuye, hemî PC ji destên zarokan carek din kom kirine."

Li gor Evînê niha tiştа herî bi wate şaredariyên BDPê û partiya wan dikin û wiha berdewam kir: "Mînak niha kampanyayek destpêkirine. Her 98 şaredarên Kurdan ev gundên mexdurê erdhejê û Wan li xwe par kirine. Heya mehekê wê rojê sê danan xwarina wan temîn bikin û vê yekê organîze bikin. Di danekî de, wê 30 hezar mirov bi hev re xwarinê bixwin.

Saziya Sixûrî ya Almanyayê jî di bin gumanê de ye

# 'Kujerê Donervanan' rêxistinek nijadperest derket



8 kesên ku hatine kuştin

**Koln (Rûdaw) -** Di 10 salên dawî de li Almanyayê 10 bazirganên biyanî (5 Kurd, 4 Tirk û yek jî Yûnan) ji aliyê kesên nenas ve dihatin kuştin. Lê ti kesî nizanibû ev kes ji bo çi hatine kuştin; polîs û saziyên ewlekariya alman jî ligel van bûyeran neçar bûn. Ev bûyer di rayagiştî de wek "Döner-Killers" (Kujerê Donervanan) dihat zanîn, ji ber ku di nava kuştiyan de çend donervan hebûn. Van rojan 'Kujerên Donervanan' êdî eşkere bûn: rêxistineke almanî ya nijadperest bi navê "Nationalsozialistischer Untergrund" (NSU), yanî bi wateya Nasyonal Sosyalîstên Nehênî. Polîsan di mala kesên gumanbar de lêkolîn kirin û çendîn video dîtin ku tê de behsa kuştina donervan û gulfiroşan tê kirin.

Bûyera dîtina vê rêxistina nijadperest wiha bû: Hefta borî li bajarê Almanya Eisenachê di nava otomobîleke şewitandî de polîsan laşê du zilaman dîtin. Piştî ku hat fahm kir ev herdu kes gumanbarên çendîn bûyeran in, di mala wan a li bajarê Zwickau de lêgerîn hatin kirin û demançeyek hate dîtin ku di sala 2007ê de polîsek pê hatibû kuştin. Polîsan herwiha jineke bi navê Beate Z. ya hevala wan herdu kesên kuştî jî binçav kirin. Tişta herî balkêş ew bû ku polîsan di lêgerîna wê malê de demançeyek din dît û eşkere bû ku bi vê demançeyê ew 10 donervan û gulfiroş hatibûn kuştin.

Piştî vê yekê lêpirsîn û lêkolînên polîsan hatin berfirehkirin û guman heye ku hê çend kesên din jî girêdayê vê rêxistinê hebin. Lewma roja duşemê polîsan kesekî din yê bi navê Holger G. girtin bin çavan.

## Gelo têkiliya BND bi vê rêxistinê re hebû?

Hate zanîn ku herdu kesên (Uwe Böhnhardtê 34 salî û Uwe Mundlosê 38 salî) ku di otomobîlê de şewitî hatine dîtin, di sala 1998ê de carekê hatine girtin û dîsa hatine berdan û ev 13 sal in ku xwe veşartibûn. Çapemeniya Almanyayê jî gumanan dike û dipirse ka ev kes çawa karîne xwe veşêrin, bêyî ku hayê BND (Saziya Sixuriya Federal) ji wan tune be, anjî ew kes bikar neanîbe. Li gor rojnameya almanî FAZ, serokê vê rêxistinê endamê BNDê bûye û di mala herdu kesên kuştî de jî nasnameya taybet ya kesên sixûr hatine dîtin. BNDê jî daxuyand ku têkiliya wan bi vê rêxistinê re tune ye.

Ajanekî berê yê ku navê wî nehat eşkerekirin, ji rojnameya almanî BILDê re daxuyand, "Zehmet e ku rêxistineke wiha karibe xwe ewqas sal veşêre. Dibe ku haya servîsên sixûrî ji wan hebûye." Hevseroka Partiya Keskan Claudia Roth jî ragehand ku "Ev terora organîzekirî û sîstematîk ya nijadperestan e. Divê hikûmet derbarê têkiliya servîsên îstîxbaratê bi vê rêxistinê re agahî bide." Serokwezîra alman Angela Merkel jî soz daye ku bi her awayî bûyer bê ronîkirin.

Rûdaw

Rojnameyeke siyasî û heftane

Xwedî
Rudaw Media GmbH

Sernûser
Ako Mihemed
akopress74@yahoo.com

Rêvebirê Nivîsînê
Nasredîn Akyol
nasredin@rudaw.eu

Redaksiyon
Mehmet Sebatli
sebatli@hotmail.com

Besam Mistefa
wardoz@gmail.com

Mihemed Tahir
mtahir2011@windowslive.com

Dîzayner
Hamdullah Yumlu

Îdare û belavkirin
Mustefa Sefîq Edilbî
gare2005@hotmail.de

Şêwirmendê yasayî û aborî
Ayhan Çiftçî

Marketing û reklam
Mansour Sedghi
m.sedghi@rave-online.org

Navnîşan
Rudaw Media GmbH
Gutenbergstr. 63a
50823 Köln/Germany

Pêwendî
Telefon: +49 (0) 221-26 00 40 02
Telefax: +49 (0) 221-26 00 49 81
www.rudaw.net / www.rudaw.eu
info@rudaw.eu

Belavkirin / Vertrieb:
Axel Springer Vertriebsservice GmbH
Süderstraße 77
20097 Hamburg
www.as-vertriebsservice.de

Rûdaw ji bo nivîsên ku bi nav tên weşandin ne berpirsyar e.



"Nebêjin ji Zaxo heta Xaneqîn, bêjin ji Şengalê heta Xaneqîn"

# Bo cara yekê Kurdên êzîdî dibin deshilatdarên Şengalê

Silêmanê Alîxan Şengal

Roja erebkirinê nêzîke hêdî hêdî ji Qezaya Şengalê ava dibe û bo cara yekê Kurdên êzîdî dibin berpirsên mezinên wê navçeyê. Lê çend siyasetmedarên Êzîdî dibêjin ewneteweyeke cuda be ji Kurdan û nabe Şengal bikeve ser Herêma Kurdistanê, lê ev baskê ku bi xwegirêdana bi aliyên Erebî tê tometbarkirin berbi lawazbûneke bêtir diçe.

### Ji 42 qaymeqamên Şengalê yek jî Kurd nebû

Şengal di sala 1922yê de bûye qeza û yekemîn qaymeqamê wê Ereb bû bi navê Îbrahîm Bekir Efindî û heta rûxandina rejîma Saddam berpirsên hemû saziyên hikûmetê Ereb bûn. Bo mînak ji 42 qaymeqamên wê yek jî Kurd nebû. Herwiha Rêveberiya Polîsên Qezayê jî ku di sala 1970yî de hat damezrandin û 17 rêvebir lê hatin guhertin, yek jê Kurd nebû.

Sinûnê mezintirîn navçeya Qeza Şengalê ye û di sala 1923yê de bûye navçe. Hejmara rûniştvanên wê niha 150 hezar kes in û ji sedî 90î wan Kurdên êzîdî ne, lê bi dirêjahiya temenê vê navçeyê tenê du rêvebirên kurd lê hatine destnîşankirin û ew jî ne Êzîdî bûn.

Erebkirina Qeza Şengalê ji aliyê rejîmên li pey hev ên Îraqê ji sala 1940 destpêkiriye, wê demê li ser erdê çandiniyê eşîra Êzîdî ya bi navê Aldix gundê (Bîir Qasim) hat avakirin bo Erebên eşîra Raşid û heta sala 1979ê bi giştî 15 gund bi heman şêweyê bo Ereban hatin avakirin bi taybetî li sînorê Navçeya Sinûnê.

Rojnamevan û pisporê dîroka Şengalê Şêx Hecî Simo bi vê şêweyê behsa erebkirina Qeza Şengalê dike: "Rejîma Baas di sala 1968ê de bêtirî 800 malbatên Ereb ji eşîra Hewas Sidêd ji Hewîce anîn û li sînorê Qeza Şengalê bicihkirin."

Bi biryareke rejîma Îraqê di sala 1975ê de 150 gundên derdora qezayê hatin xirabkirin. Rûniştvanên van gundan di civatgehên bi zorê avakirî de hatin bicih kirin û navên erebî li wan n kirin weke; Ûrube, Hitîn, Endelus, Tamîm, Qadisye û Yermûk, herwiha li derdorên van civatgehan hêlek çêkirin ku nabe avakirin lê çêbibe.

Li Şengalê ji bilî anîna eşîrên ereb bo, herwiha erebkirineke navxweyî jî hebû ew jî bi rêya guhertina nasnameya Kurdên êzîdî bû û qeydkirina wan weke Ereb.

Hecî Simo amaje da wê yekê jî ku pilaneke din a Baasê hebû bo erebkirina navçeyê ew jî pêkhatîbû ji veguhestina Êzîdiyan bû bo bajarên başûrê Îraqê: "Dixwestin hêdî hêdî 10- 15 malbatên Êzîdî bibin başûrê Îraqê da ku ji kultur, nasname, netew û ola xwe dûrkevin û wan têxin çarçoveke Erebî. Li Şengalê erebkirin gelekî xurt bû, ji ber ku hertim navçeyeke Pêşmerge perwerbû."

### Desthilata hikûmî ketiye destê Şengaliyan

Piştî "proseya azadiya Îraqê" di sala 2003yê de rewşa vê qezayê ji aliyê rêvebirinê bi şêweyekî giştî hatiye guhertin. Li gor zanyariyên Rûdawê niha tevaya saziyên qezayê ji aliyê xelkê resenê bajar û bi taybetî ji aliyê Êzîdiyan tên birêvebirin. Piştî proseya azadiyê, yekemîn Kurdê êzîdî ku ew jî Dexîl Qasim bû weke qaymeqamê Şengalê dest bi kar kir. Niha jî Muyeser Hecî Salih ku ew jî Êzîdî ye qaymeqamê Şengalê ye.

Herwiha bêtiriya karbidestên Navçeya Sinûnê jî Kurdên êzîdî ne. Li Navçeya Girûzêr jî bi heman şêweye, avên resenên bêtiriya deverên ku berê hatibûn erebkirin, weke berê lê hatine. Li ser astê perwerdeyê jî bo cara pêşiyê dersa ola Êzdiyatiyê tê xwendin li wan dibistanên ku ji aliyê Hikûmeta Herêma Kurdistanê tên rêvebirin.

Lê Serokê Partiya Pêşkeftina Êzîdî, Waed Hemed Meto ji guhertinên ku piştî 2003 li navçeyê pêhatine nerazi ye û dibêje: "Karbidestên Şengalê heman siyaseta partiya Baas didin meşandin, Êzîdiyan ji Şengalê derdixin û Kurdên misilman lê bicî dikin." Lê Rêvebirê Buroya Cîbicîkirina Maddeya 140 li Şengal, Seîd Cirdo Meto ev axaftin retkirin û got, "Ji Şengalê kes nehatiye derxistin."

Waed Meto di wê baweriyê de ye ku Êzîdî neteweyeke serbixwe ne û ji netewa kurd cuda ne, lê rêjeyeke geleke kêm a Êzîdiyan xwedî li vê boçûnê derdikevin. Waed di hilbijartinên 7ê Adara 2009ê de berendam bû Parlamenê Îraqê, lê wî dengên pêwîst qezenc nekirin û li hember da Ciyan Dexîl Qasim ku jineke Êzîdî ye li ser lîsteya PDKê di çarçovê Hevpeymaniya Kurdistanî de gihişt parlamenê. Herwiha 5 Kurdên din ên êzîdî û misilman ên Hevpeymaniya Kurdistanî ji qeza Şengalê gihan parlamenê.

### 140 wê hemû şopên erebkirinê ji Şengalê paqij neke

Li gor axaftinên Rêvebirê Buroya Cîbicîkirina Maddeya 140 li Şengalê, niha bêtiriya Kurdên êzîdî yên derkirî vegeriyane ser mal û milkên xwe, lê li gor naveroka vê maddeyê wê hinek şopên erebkirinê li Şengalê her bimînin.



Seîd Meto dibêje "her kesê ku di serjimariya sala 1957ê de li Şengalê hatibe qeydkirin, çi Kurd be yan Ereb wê weke xelkê resenê Şengalê bên hijmartin." Lê erebkirina Şengalê ji sala 1940î destpêkiriye û heta 1979ê berdewam bû, ev jî tê wateya ku şopên erebkirinê yên berî sala 1957'an wê weke xwe bimînin.

Partiya Baas a berê ne tenê erebkirin encamdaye, lê destkariya sînorên navçeyê jî kiriye û ji wan jî Navçeya Girûzêr ji Şengalê qutkiriye û xistiye ser Qeza Beac. Herwiha çend gundên Devera Zumar jî xistine ser devera Rebîe vê jî bandor kiriye ser kêmbûna rêjeya Kurdan li sînorê qeza Şengalê.

Şengal ne tenê ji aliyê siyasî ji Kurdistanê qutkiriye, lê ji aliyê cografî jî ew qutkiriye. Her kesê ji Kurdistanê serdana Şengalê bike ti rêyeke rasterast nîne wî bighîne Şengalê, divê ew yan bi rêya Telafer zan Rebîe biçe wî bajarî û ew jî rêyên metirsîdar in. Lê Seîd Cidor Meto dibêje ku Rebîe beşeke ji xaka Kurdistanê û berî sed salan ji aliyê desthilatdarên Brîtanî hatiye qutkirin û dane Ereбên Eşîra Şemmer.

### "Bêjin ji Xaneqîn heta Şengalê"

Bi baweriya Berpirsê Buroya Cîbicîkirina Maddeya 140ê li Qezaya Şengalê, pêwîst e di navbera her sê aliyên siyasî yên Kurd, Şîe û Sunnî de lihevhatineke siyasî pêkbê, wî herwiha got: "Hikûmeta navendî eger niyeta xwe zelal bike û bixwaze vê maddeyê cîbicî bike, ti astengî tune." Seîd Cirdo derbarê pêngavên ku hatine avêtin bo cîbicîkirina maddeya 140ê li Şengalê got "di qunaxa asayîkirinê de ku qunaxa pêşiyê ya cîbicîkirina vê maddeyê ye, formên bedelê li ser bêtirî 50 hezar malbatan hatine dabeşkirin û heta niha 20 hezar malbatan bedel standine. Yên mayî jî li ber destê Komîteya Darayî ya Lîjneya Bilind a Cîbicîkirina Maddeya 140e."

Lê Serokê Partiya Pêşketina Êzîdî Waed Meto got "em ê hemû hewldanan bikin ku em venegerin ser Herêma Kurdistanê, ji ber ku mafê gelê me yê Êzîdî di projeyê destûra Herêma Kurdistanê de nehatiye bicihkirin. Di vê projeyê de hin xal hene gef in li ser me, bi taybetî xala ku dibêje li Herêma Kurdistanê nabe ti yasayek derkeve eger nakok be ligel Şerîeta Îslamê." Lê Waed bi xwe jî dibêje ku di dawiyê de wê Şengal bikeve ser Herêma Kurdistanê "ji ber ku desthilata Herêma Kurdistanê xurt e û têkiliyên baş ligel hemû aliyan hene."

Herwiha rojnamevan Şêx Hecî Simo dibêje ku ji bo neheştina şopên erebkirinê pêwîste rayedarên Herêma Kurdistanê serdana Şengalê bikin weke çawa serdana Kerkûk û Xaneqînê dikin. Wî herwiha got "dema berpirsekî Herêma Kurdistanê diaxive bila nebêje ji Xaneqîn heta Zaxo, axaftin dilê me dêşîne. Bila bibêjin ji Xaneqîn heta Şengalê."

## Şirove

### Wek kevirên puzlê

Mahmut Kilinç

Her roj hê bêtir çenber li rejîmê BAAS teng dibe. Di rojên ku birêvebiriya Sûriyê peywendiyê bi dijayetiyê ve dayne, bi piştevaniya DYA û YEyê, Yekîtiya Ereban endamtiya vî welatî rawestand. Bi pîvanên siyaseta navneteweyî ew biryar li dijî birêvebiriya Şamê gavek gellek girîng e.

Dibetiyek pirr mezin e ku piştê vê biryarê bi handana DYAyê Tirkiyeyê bi fermî pêşwaziya Encûmena Niştemaniya Sûriyê kir. Di heman demê da ji welatên Kendavê jî nûçeyên piştevaniyê di medyayê de cih girtin. Birêvebiriya Sûriyê biryara Yekîtiya Ereban wek biryarek xeternak wesifand. Wisa ye jî, ji ber ku eger handan û piştevaniya DYA û YEyê nebûya, Yekîtiya Ereban biryarek wisa tund nedigirt. Bi vê biryarê û herwiha di qada navneteweyî de vekirina deriyê nasandina Encûmena Niştemanî ya Sûriyê, kevirin riya têkilî pê kirin û mudexeleya rejîmê BAAS tên danîn.

Jixwe piştî ewqas kuştin û aloziyê, li ser kar mayîna birêvebirina Şamê ne asayî ye. Em dikanin van pêşveçûnan weke destpêka têkçûna rejîmê bibînin. Rejîm wê têk here, lê rêxistinên Rojavayê Kurdistanê ji vê re çiqasî amade ne? Îro Sûriyê ji zincîra dewletên dagirker ya herî lawaz û aloz e. Ango ji vê zincîrê yeke din li ber têkçunê ye û bona miletê Kurd firsendek nû rû dide, lê rêxistinên Rojava wê karibin jê sûde werbigrin?

Çend rojan berê li Qamişloyê bi tevlêbûna 11 partiyan Encûmena Niştemaniya Kurd li Sûriyê hat damezrandin. Ev gavek di cih de bû, lê Partiya Yekîtiya Demokratîk (PYD) û çar partiyên din tevlê nebûn. Wek tê zanîn PYD partiya di bin sîwana PKKê de ye. Tevlênebûna wê partiyê dibe sebeba pirs û fikaran.

Ne hewceyî gotinê ye ku di rojên wisa de her partî û rêxistin divê dev ji berjewendiyên partî û grupa xwe berdin, li ser mafên niştemanî bikevin nav hevkariyê. Di dîrokê de her roj firsend dernakevin, eger Kurd jê sudê wernegirin, qedera bêbext wê çawa bê guhertin.

Îro li Rojhilata Navîn du eniyên sereke hene. Sûriyê, Îran, Hizbullah, Hamas û Kemalist ligel hev in, di eniya din de dewletên din di bin sîwana Yekîtiya Ereban de, DYA, YE û çi heyf e ku Tirkiye. Başûrê Kurdistanê û Encûmena Niştemaniya Kurd Li Sûriyê jî helwesta xwe li dijî birêvebiriya Şamê diyar kirin. Lê derbarê helwesta PYDê de ronahî naxuyê. Eger rêxistinên Rojavayê Kurdistanê îro nekevin nav hevkariyek niştemanî, gelo ew li benda çi ne?

Rêxistinên Rojavayê Kurdistanê li ber berpirsyariyek dîrokî ne, di dîroka miletê Kurd de mînakên ku ji firsendan sûd nehatiye wergirtin ne hindik in. Divê dîrok dubare nebe, di Sûriya nû de miletê Kurd mafên neteweyî bi dest bixe. Daxwazên Kurdan eşkere ne. Mînaka Başûrê Kurdistanê li ber çava ye, ji bo gelê Rojavayê Kurdistanê statuyek siyasî divê. Jixwe ewê bibe hêmana aramiya Sûriyê ya nû. Herwiha statuya vî parçeyî ji bo têkoşîna azadiya miletê Kurd mijarek stratejîk e. Her partiyeke Kurdistanî, bi taybetî partiyên xwedan hêz, divê bi vê armancê xwe nêzikî pêvajoyê bikin. Îro dora Sûriyê ye, sibe li ber deriyê Îranê ye, du sibe... Wek kevirên puzlê, di encama dîzayna Rojhilata Navîn de tablo wê temam bibe.



# Ereb û Tirk dixwazin Herêmeke parastî li Rojavayê Kurdistanê çêkin

**Hîm Mele Ehmed**

Piştî ku Yekîtiya Welatên Erebî di civîna bilind ya wezîrên derve de beşdariya Sûriyê di hemû komik û encumenên xwe de rawestandibû û destnîşan kiribû ku hemû aliyên opozisyona ereb di bin siha wê de li hev bicivin û bibin xwedî yek dîtin, hêzên Kurdên Rojavayê Kurdistanê dipirsin gelo Yekîtiya Welatên Erebî wê li nêrîna Kurdan jî guhdarî bike, yan wê tevgera kurdî ji amadekariyên qûnaxa nû ya Sûriyê dûr bike?

Çend roj berî ku Yekîtiya Welatên Erebî endametiya Sûriyê bicemidîne, wê hevdîtin ligel du hêzên cuda yên opozisyona Sûriyê pêkanîbû, lê Encûmena Niştimaniya Kurd hatibû dûrhiştin ji van civînan. Ev yek jî bû sedem ku tirsek li cem rewşenbîrên kurd peyda bibe ku Yekîtiya Welatên Erebî li dijî hebûna Kurdan di nav danûstandinên çareserkirina kêşeya Sûriyê de tevbigere. Encûmena Niştimaniya Kurd piştî Kongreya Qamişloyê berî 3 heftiyan hatibû damezrandin. Di kongrê de hemû partiyên mezin yên Rojavayê urdistanê beşdar bûbûn, ji bilî PYDê.

Yekîtiya Welatên Erebî hevdîtin bi herdu rêxistinên opozisyona Sûriyê re pêkanîbû: Bi Encûmena Niştimaniya Sûriyê, bi serokatiya Burhan Galyûn, ya ku wek opozisyona derve tê naskirin; herwiha wê hevdîtin bi Komîteya Hevrêziya Niştimanî re jî pêk anîbû, wek opozisyona hundur.

Ji bo naskirina dîtin û helwesta Encûmena Niştimaniya Kurd, Rûdawê têkilî bi siyasetmedar Ehmed Çeto re danî, yek ji rêvebiriên Partiya Yekîtiya Demokrata Kurd li Sûriyê. Çeto da xuyakirin ku xebatên Yekîtiya Welatên Erebî wê kêm bimînin, eger Encûmena Niştimaniya Kurd tevlî wan danûstandinan nebe: "Çawa Yekîtiya Welatên Erebî herdu beşên din yên opozisyona Sûriyê dîtin, diviyabû tevgera kurdî jî dîtiba, bîrûbaweriyên wan guhdarî kiriba. Loma em dibêjin ta hewldanên erebî temam bibin, divê hemû beşên civaka Sûriyê bibîne ." Herweha Çeto nerazîbûna tevgerê nîşan da, ji ber wê xebata Yekîtiya Welatên Erebî ya kêm û ragehand ku tevgera kurd di hewldananan de ye ji bo têkilî kurdî bi Encûmena Kurdên Suriyê û bi hêz û civaka sivîl yên aliyên din jî divê hazir bin di diyalog û guftûgoyên li ser rojên bên yên Sûriyê de." Hate zanîn ku heft nûnerên Encumena Niştimaniya Kurd wê herin Qahîrê ji bo hevdîtinekê bi Yekîtiya Welatên Erebîî re pêkbînin. Li gor agahiyên ku bidestketibûn, dihat çaverêkirin ku ev kesayetî herin: Hemîdê Hecî Derwêş, Dr. Saad

### Heft nûnerên Encûmena Niştimaniya Kurd wê herin Qehîrê ji bo hevdîtineke bi Yekîtiya Welatên Erebî re pêk bînin

bi Qahîrê re bê danîn û Kurd wek aliyekî tevlî danûstandinan bibin: "Niha hewldanek heye ku em wan bibînin. Di baweriyên me de mimkûn e îro yan sibe karekî kurdî jî hebe ji bo dengê xwe bigihîne Yekîtiya Welatên Erebî û ji wan re bêjin hûn şaş in û tevgera Aldîn Mela, Kamîran Haco, Xelîl Gero, D. Welîd Şêxo, Telal Ibrahîm Paşa, Dr. Kamîran Bêkes

Ji aliyekî din ve dewletên ereb, nemaze yên Kendava Fars û Tirkiye guftûgoyan bi rêve dibin ji bo avakirina herêmeke parastî di nav erdên Sûriyê de. Berî çend mehan ev pêşniyar ji aliyê Tirkiyeyê ve derketibû ji bo penabergehên Sûriyeyî li ser erdê Tirkiyeyê bên çêkirin. Di heftiyên dawî de Encûmena Niştimaniya Sûriyê hewldanên xurt birêve bir ji bo welatên hawîrdorê Sûriyê herêmên parastî di hundirê Sûriyê de peyda bikin. Wisa Dr. Amar Alqurebî, serokê Kongra Sûrî Ji Bo Guherînê berî çend rojan ragehandibû ku opozisyona Sûriyê têkilî bi Urdun, Tirkiye û Herêma Kurdistanê re daniye ji bo çêkirina vê herêmê. Herwiha diyar bûye ku Tirkiye dixwaze kurahiya herêmê tenê 5 km be, lê opozisyona Sûriyê û Amerika dixwazin herêm di nav 30 û 50 km de be. Piraniya sînorên di nav Sûriye û Tirkiyeyê de herêmên kurdî ne. Lewra tirsek heye ku derbasbûna Artêşa Tirkiyeyê nav herêma parastî wê astengiyên din bi xwe re bîne, nemaze ku ku hêzên PYD/PKK bi hişkî û ta radeya hilgirtina çekan li dijî derbasbûna Tirkiyeyê ne.

## 14 rojnamevan wenda ne û 15 rojnamevanên jin girtî ne

**Rûdaw -** Navenda Sûriyê bo Azadiya Nêrînan (SCM) ragihand ku li Sûriyê di navbera Sibat û Cotmeha 2011ê de 109 bûyerên binpêkirinê li dijî 95 rojnamevanan hatine qeydkirin.

Damezrêner û rêvebirê vê navenda ku destûra xwe di sala 2004ê de ji Fransa standiye, Mazin Derwêş, got mebesta wan ji derxistina vê raporê ew bû ku hevberkirinekê bikin navbera qunaxa berî û piştî soza rejîma Sûriyê ku rê bide kanalên medyayê bi şêweyekî azad bûyeran pêşçav bikin: "Da em bizanin ka rejîma Sûriyê pêgîr dibe bi sozên dide yan sozên wê her têk diçin."

Rapor dibêje ku li Sûriyê ji dema destpêkirina xwepêşandanan û heta niha 95 medyakar ji ber karê xwe yê derbarê bûyerên Sûriyê rastî binpêkirinê hatine. Ji wan 11 rojnamevan bêtirî carekê hatine girtin û 76 jî tenê di Şamê de pêkhatine.

Li gor ku rapor dibêje, "29 medyakar bi zorê hatine girtin û 76 rojnamevan jî hatine wenda kirin." Li gor lîsteyekê ku ligel raporê hatiye hevpêçkirin, 31 jinên medyakarên sûrî hatine girtin, 15 nivîskarên malperên înternêtê ku hin ji wan şandine dadgehê û çarenivîsa hinekan jî nediyar e. Derbarê wênegiran jî "bi carekî heft wênegir hatine girtin, ji wan sê şandine dadgehê û çarenivîsê yekî jî hê nediyar e." Ji bilî rojnemevanan şeş mafnas û çalakvanan jî hatine girtin.

Li Sûriyê rojnamevanên biyanî jî rastî astengiyan tên û 10 ji wan ji Sûriyê hatin derxistin.

Rapor behsa wê yekê jî dike ku kanalên televizyonên erebî ji aliyê alîgirên rejîmê rastî êrîşên tund tên, bi taybetî jî kanala Al-Jazeera ku buroya wan di 29ê Nîsanê de hat girtin. Ji bilî ku malbata medyakara kanala Al- Jazeera, Rola Îbrahîm, ji ber goşara mezin haşatî ji keça xwe kirin. Medya fermî ya Hikûmeta Sûriyê herdu kanalên Cezîreya Qeterî û Erebiye ya Siudî weke "kanalên fitnê" binav dike.

# Civata Niştimanî ya Kurd li Sûriyê hêza xwe tecrûbe kir

## Yekîtiya Welatên Erebî endametiya Sûriyê di yekîtiyê de rawestand û bi xwepêşandanek 60 hezar kesî Kurdan li Qamisloyê hêza xwe nîşan dan



**Hewlêr (Rûdaw) –** Partiyên kurdî yên Rojavayê Kurdistanê ji biryara rawestandina endametiya Sûriyê di Yekîtiya Welatên Erebî de kêfxweş in û pêşbînî dikin ku bibe dergehek bo navdewletîkirina pirsa Sûriyê û hilweşandina rejîma Beşar Esed. Biryar tenê 3 rojan piştî xwenîşandaneke 60 hezar Kurdan bû li bajarê Qamişlo ku weke yekem xwepêşandana bi vî rengî tê hejmartin, ji dema ku bizava nerazîbûnan li Sûriyê destpê kiriye.

Roja 12ê Mijdarê di civîna awarte ya wezîrên derve yên welatên erebî de, endametiya Sûriyê di Yekîtiya Welatên Erebî de bi piraniya dengan hat rawestandin. Wezîrê derve yê Qeterê ku serokatiya gera Yekîtiya Welatên Erebî dike, daxwaz ji dewletên erebî kir balyozên xwe ji Şamê bikişînin.

Berdevkê Partiya Demokrata Kurd li Sûriyê, Nûrî Birîmo, bo Rûdawê ragehand: “Rawestandina endametiya Sûriyê ji aliyê Yekîtiya Welatên Erebî gaveke rast e. Me bawer nedikir Yekîtiya Welatên Erebî biryareke bi vî rengî bide.” Nûrî Brîmo herwiha pêşbînî kir ku piştî vê biryara Yekîtiya Welatên Erebî, Neteweyên Yekbûyî (NY) jî biryara navdewletîkirina pirsa Sûriyê bide, bi heman awayê ku li Lîbyayê çêbû: “Nebûye li dinyayê rojane 40 kesên bêçek bi destê rejîmekê bên kuştin û civaka navdewletî jî bêdeng be. Milletê Sûriyê bi xwenîşandan û qurbaniyên xwe Yekîtiya Welatên Erebî neçar kir biryareke wisa li dijî Beşar Esed û rejîma wî bidin, bêguman NY jî neçar ma biryara pêwîst bide.”

### PYD: Ev biryar bo rejîma Sûriyê hişyariyek e

Nûnerê PYDê Husên Koçer bo Rûdawê daxuyand: “Bi baweriya me ev biryar hişyariyeke bo hikûmeta Sûriyê ku eger kuştina xelkê û şîdeta dijî xwenîşanderan berdewam bike, ji nav diçe.”

Husên Koçer ku nûnerê PYDê li Herêma Kurdistanê ye, wiha axivî: “Her gavek li dijî rejîma Beşar Esed bê avêtin, em piştgiriya wê dikin û ligel dibin.” Ji alîkî din ve, roja çarşema borî bi rêbertiya Civata Niştimanî ya Kurd li Sûriyê ku 10 partiyên siyasî kurdî lixwe digire, li navçeya Cezîrê ya Rojavayê Kurdistanê mezintirîn xwepêşandana nerazîbûnê hat lidarxistin. Civata Niştimanî ya Kurd li Sûriyê, ku ji bilî PYDê piraniya partiyên serekî yên Rojavayê Kurdistanê tê de, di dawiya meha borî de hat damezrandin, roja çarşema borî ku çaremîn roja Cejna Qurbanê bû, bi beşdariya serkirdeyên civatê mezintirîn xwenîşandan li Qamişlo saz kir, ku li gor jêderên nûçeyan hejmara xwenîşanderan di navbera 60-70 hezar kesan debû. Ev jî weke tecrûbekirina hêz û giraniya wê bû ku dihat gotin helwesta wê li himber rûxandina rêjîmê ne zelal e û bandora wê li ser kolana kurdî tune û nikare rêbertiya civaka kurdî di qonaxa şoreşa Sûriyê û piştî şoreşê de jî bike. Sekreterê Partiya Çep a Kurd li Sûriyê Mihemed Mûsa ku endamê serkirdayetiya civatê ye, dibêje xwenîşandanên hezar kesî baştirîn bersiv in bo kesên ku gumanê ji aktîfbûna civata wan dikin: “Me karî herî kêm 50 hezar xwenîşanderan bînin ser caddeyê. Ev jî giraniya civata niştimanî îspat dike. Di roja înê de careke din xwepêşandan hat kirin, lê ji ber ku em beşdar nebûn, li Qamişlo 15-16 hezar kes tenê derketin ser caddeyan.”

Li gor dîtina sekreterê baskekî cudabûyî ji Partiya Demokrata Kurd li Sûriyê, Nesredîn Îbrahîm, xwepêşandana çarşema borî nûkirina baweriyê bû di navbera Kurdan û partiyên siyasî de ku îro di civata niştimanî de kom bûne: “Ji destpêka bûyeran ve cemawer û kadroyên me di xwepêşandanan de beşdar bûn û daxwaza guherandina rejîma sûrî dikirin. Xelk bi şepêlan li ser bangewaziya civata niştimanî hatin ser caddeyan û ew peyam dan ku civat nûnera Kurdan e, ew siyaset û berjewendiya gelê kurd diyar dike.”

### Bêbawerî di navbera civat û kolanê de

Lê ligel vê yekê jî, li gor hinek kesan ev civat heya dawî nikare van xwepêşandanên wiha saz bike. Bi baweriya siyasetvan û çavdêrê serbixwe li Qamişlo, Azad Heme, xwepêşandana çarşema borî reaksyona partiyên kurdî ye li hember rexneyên kolana kurdî: “Bawer nakim civata kurdî heya serî bikare xwepêşandanên wiha fireh saz bike, ji ber di navbera kolana kurdî û civata navbirî de bêbawerî heye.” Herwiha bi nêrîna endama ofîsa pêwendiyên Şepêla Pêşeroja Kurd li Sûriyê, Hervîn Osê, tiştê Civata Niştimanî ya Kurdî roja çarşemê kir, dubare nabe: “Tiştekî nû li cem civatê tune, tiştê îro dibêje di destpêka bûyeran de jî digot, nikare ji cemawer re bibe rênîşander ji ber li ser bingeheke şaş hatiye çêkirin.”

**Nûrî Brîmo: Me bawer nedikir Yekîtiya Welatên Erebî biryarek bi vî rengî bide**

---

## Şirove



**Êşa erdhêja Wanê û ruhê netewetiya Kurdan**

**Bayram Ayaz**

Di ser erdheja Erdîşê û Wanê re sê hefte derbas bûn. Herêm hê diheje. Roja 9ê û 15ê Mijdarê jî li Wanê erdhejên nu qewimîn. Pispor dibêjin ev herdu erdhejên dawî yên nû ne.

Xelkê devera Wanê perîşan e. Xaniyên hevwelatiyan xera bûne, bê cîhwar mane, neçar in, di konan de dijîn. Li hêla Wanê zivistanê, sar û sermayê destpê kiriye. Jiber sermayê nexweşiyên wekî zekemî, zature belav dibin. Van sê rojên dawî sê zarok ji ber serma û zekemiyê mirin. Bi deh hezaran niştecîhên Wanê herêmê terk kirine û dikin. Metirsî heye ku nufûsekî zêde ji Wanê dûrbikeve û êdî qet nikaribe vegere welatê xwe, axa bav û kalan.

Ji kîjan alî ve em lê binêrin, bi rastî jî li devera Wanê felaketeka xwezayî mezin bi ser gelê me de hat. Birîn giran e, êşa gel kûr e.

Di van rojên reş de hin tişt çêbûn ku kul û kovanên mirovî hinekî dikewîne û mirov pê serbilind e.

Ev çi ne?

Êşa ku gelê Kurdistanê li Wanê jiya, neteweya kurd bêhtir nêzîkî hevdu kir. Miletê kurd li çar parçên Kurdistanê û li hemû deverên ku Kurd lê niştecîh in, seferber bû. Mirov dikare bi hêsanî bêje, her Kurdê xwedî xîret êşa Wanê di dilê xwe de jiya. Erdheja Wan û Erdîşê agir berda dil û canê Kurdan. Kurdistanê seranser şîna Wan û Erdîşê girt. Ev yek gelekî girîng e. Eger civakekî di rojên reş de, xemgîniyê û kul û kovanan parve bike, ew civak êdî neteweyekî bi îstîkrar e.

Li Silêmaniyê, Hewlêrê, Kerkûkê, Duhokê Kurd rabûn ser piyan. Alikariyê berhev kirin. Li Duhokê komek hûnermend konserekî saz kirin. Peyama wê konserê tena bi serê xwe peyameka watedar bû. Hûnermendên Duhokê bûn tercûmanê hestên Duhokiyan û gotin: “Duhok Wan e, yek ax û ziman e, yek xem û kovan e...“

Demê di rojên reş de Duhok bibe Wan, Wan bibe Qamişlo, Qamişlo bibe Mahabad, di ruhê miletî de ev hestiyariya yekrêzî peyda bibe, wê demê mirov dikare ji berbi kamilbûna prosesa netewa kurd û netewa Kurdistanê bahs bike. Wê demê ti maneya sînor û têlên ku welatê me Kurdistanê û netewa kurd parçe kirine namîne. Cîhê keyfxweşiyê ye, em li ser vê riyê ne.

Dostê hêja Prof. Îlhan Kizilhan dibêje: "Herdem wiha ye: mirin, êş û tadeyî milet nêzîkî hev dikin. Dost û dijmin ji hev cuda dike. Perspektîven nû di ketina kûr û katastrofan de derdikevin. Travma ku em bahs dikin, civak nêzîkî hev dike û ji vê trajediyê perspektîven gelemperî, çandî, û civakî derdixîne."

# Ciwanekî kurd li ser Wladîmîr Pûtîn fîlmekî dokûmentasyon çêdike

Ciwanê kurd yê 22 salî destpêkê wateya vê projeyê hîs nekir, heta dema ku ket firokeyê berbi Moskowê...

**Kendal Firat**

Tenê çend meh di ser xwendina pişeyî ya Îlham Coşkun re derbas bûne, lê ew bi projeyek gelekî giring û bi prestîj re mijûl e. Ciwanê kurd yê 22 salî ligel tîmeke televizyona almanî ARD bi çêkirina fîlmekî dokûmentasyon yê 75 xulekî li ser jiyan û xebata Serokwezîrê Rûsyayê Wladîmîr Pûtîn re mijûl e. Wladîmîr Pûtîn wê di bihara 2012ê de xwe weke berendamê Serokatiya Rûsyayê nîşan bide, di Adara 2012ê de dokûmentasyona Îlham Coşkun û tîma wî jî wê di ARD de bê weşandin.

Gelek tîmên televizyonê ji seranserê cîhanê xwestin ku dokûmentasyonekî li ser jiyana û xebata Wladîmîr Pûtîn çêkin, lê Pûtîn tîma televizyona almanî tercîh kir û ew dawetî Moskowayê kirin. Tîma ARD ku ciwanê kurd jî tê de cîh digre, ji sê kesan pêk tê: Îlham Coşkun weke kameravan, kameravanekî din yê alman û rojnamevan û çêkerê fîlmên dokûmetasyon yê alman, yê xwedî çendîn xelatan, Hubert Seipel.

Lê ciwanê kurd çawa ket nav vê projeyê, çima ew hate hilbijartin? Îlham hinekî behsa xwe û awayê bidestxistina kar di projeyê de kir: "Di 14 saliya xwe de min rojnamevanekî alman nas kir, wî berê di rojnameya BILD de kar dikir, ew li Tirkiyeyê û Kurdistanê jî geriyabû. Wî dest ji BILD berdabû û dixwest rojnameyeke serbixwe ava bike. Wî kesî ez kişandim nav karê medyayê û kameravaniyê." Îlham di havîna borî de xwendina xwe ya pîşeyî qedand û herwiha bi serê xwe dest bi kar kiriye û niha ligel şîrketeke fîlmçêker li bajarê Bremenê li bakurê Almnayayê kar dike. Îlham berdwam dike: "Destpêkê şîrketa ku ez ligel dixebitim pirsî ka ez dixwazim tevlî projeyek wan a kişandina fîlmekî dokûmentasyon li Rûsyayê bibim, lê min nedizanî bê fîlm li ser çi û kê ye." Lê bêguman Îlham bersiva erê dide şîrketa fîlmçêker û wiha çîrok dest pê dike.





Vladîmîr Pûtîn bi kêfxweşî laşê xwe nîşan dide

Wêne: AFP

Gelo Îlham çi hîs dike, dema dibihîse ku ewê dokûmentasyonekê li ser yek ji bihêztirîn mirovên cîhanê çêbike? "Kêfa min hat, lê zêde ne tiştekî din, ez tam tênegihiştim wateya fîlmekî wiha, ji xwe ez hîn geleki ciwan im jî. Lê dema ku em ketin firokeyê û me berê xwe da Moskowayê, min fam kir ku emê herin serdana yek ji bihêztirîn mirovên cîhanê bikin. Dema mirov ciwan e, mirov behsa wan tiştan dike û xeyal dike ka mirovê çi bike, eger mirov rastî wan kesan were. Lê êdî ne xeyal bû, em diçûn cem yek ji wan kesên herî bihêz li cîhanê..."

Dema ku firokeya Îlham û tîma wî beriya çend hefteyan piştî 3 saetan ji Almanyayê gihişt Moskowê, berpirsekî hikûmî yê rûsî berê Îlham û hevalên wî da Pekînga paytexta Çînê. Îlham û tîma xwe hatin vexwendin ku Wladîmîr Pûtîn di serdanek wî ya ji bo Çînê de du rojan bişopînên. Di rojeva Pûtîn de pêwendiyên Çînê û Rûsyayê û hewldanên baştirkirina wan pêwendiyan hebûn, Îlhamî û tîma xwe jî ji nêzîk ve danûstandin şopandin. Hîn şanda rûsî û tîma alman ji Çînê negihiştibûn Moskowê, civîna welatên YWSyê* li St. Petersburgê hebû û Wladimir Pûtîn berê xwe da St. Petersburgê, bêguman Îlham jî ligel Pûtîn bû.

> **Pûtîn bi rastî gelekî baş leyîst û ez têk birim, hem jî giran.**

### Pûtîn behsa Berlusconî kir…

21 rojan Îlham û hevalên xwe ligel Pûtîn geriyan, tevlî civînan bû, prîvat bi Pûtîn re geriyan: "Em di gellek munasebetan de ligel Pûtîn amade bûn, em ligel hev di otomobîla wî de geriyan, me bi hev re xwar, vexwar. Ji ber ku Pûtîn gelekî xwezayî û normal tevdigere, mirov pê nahese ku ew yek ji bihêztirîn kesên cîhanê ye. Ew çîrokan vedibeje, henekan dike, behsa hevdîtinên xwe ligel kesayetên cihanî dike, behsa Berlusconî kir." Îlham ligel Pûtin bi helîkoptereke leşkerî serdana qesreke Pûtîn li navbera Moskow û St. Petersburgê jî kir: "Qesrek di nîvê daristenekî de bû, cihê wê veşartî ye, gelekî mezin e, di bin çavdêriyek mezin de ye."

Lê ev projeya dokumentasyonê ne ji hewayê ket dawa Îlham Coşkun. Xortê kurd wekî din jî gelekî zîrek û çalak e, hevkarên wî pesnê xebata wî û profesyoneliya xebata wî dikin. Îlham Coşkunê ku beriya çend mehan xwendina xwe ya pîşeyî (Dizaynerê Medyayê - Dîmen û Deng) qedand, heta niha ligel çendîn şîrketên almanî yên bi nav û deng kar kiriye, wekî televizyona Sky, Radio Bremen, herwiha ligel tîmên televizyonên almanî yên mezin wekî BILD TV, RTL, Sat 1, Pro 7 û NDR. Ew di nav tîmên televizyonan de êdî ne kesekî nenas e.

### Bi Pûtîn re bîlardo leyîst

Ne tenê di civînan de û bi awayê ku di medyayê de tê nîşandan Îlham Coşkun Wladîmîr Pûtîn nas kir: "Di civînan de baş dixuyê bê ka yê xwedî hêz kî ye, yên bi temen gelekî ji Pûtîn mezintir jî li hember wî bêdeng dibin." Lê Îlham ruyê Pûtîn yê nerm jî dît: "Carekê piştî xwarinê Pûtîn pirsî ka em dixwazin ligel wî bilardo bileyîzin, min jî hinekî pesnê xwe da û got ku min demekê di tîmeke bilardoyê de lîstiye. Bi rastî jî ez ne xirab dileyîzim, lê dema ku min dît ku hemû gokên li ser maseya bîlardo spî ne û hinekî ji gokên ku ez ji bilardoyê nas dikim girantir in, min pirsî ka ev çi lîstik e û min fahm kir ku awayê ku em li Almanyayê bi bilardoyê dileyîzin cudatir e. Pûtîn bi rastî gelekî baş leyîst û ez têk birim, hem jî giran."

Malbata Îlham Coşkun di sala 1992yê de ji gundekî girêdayê Amedê tê Almanyayê û ji wê demê ve li gundekî nêzîkî bajarê Oldenburgê li bakurê Almanyayê dijî. Îlham ji malbateke Kurdên êzîdî ye û biçûkê malê bû, lê ne kesekî ku ji ber biçûkiya wî ji aliyê malbatê hatibe serberdan: "Di temenê biçûk de min kar dikir, di gastronomiyê de û herwiha bi karên bi vî rengî min hinek pere ji xwe re xezenc dikir."

Beriya çend rojan telefonek ji Îlham re hat, dîsa şîrketa fîlmkişandinê bû. Pûtîn tîma wan dîsa dawetî Rûsyayê kiriye ku kişandina fîlmê xwe berdewam bikin. "Her dema ku em dixwazin em nikarin ligel Pûtîn bin û fîlmê wî bikşhînin, dema ku kêfa Pûtîn lê be ew bangî me dike", Îlham dibeje. Îlham wê ji 14-24ê vê mehê li Rûsyayê be, ligel Wladîmîr Pûtîn.

**YWS (Yekîtiya Welatên Serbixwe) yekîtiyeke welatên berê yê Sovyeta berê ye ku piştî piştî hilweşîna Sovyeta berê hatiye avakirin.*

# Zelal wê bibe piyanîst an siyasetmedar?


Wêne: İsmet Geleç

Zelalê ji zarokatiya xwe heta niha herdem serdana Dêrsimê kiriye û eger bibe siyasetvan wê here Amedê

Azad Dîcle

Keça kurd Zelal a 12 salî li bajarê Almanyayê Gelsenkirchenê tevlî konserekê bû û bi lêxistina piyanoyê bala temaşevanan kişand ser xwe. Ligel Zelal Cengizhanê 9 zarokên xwendevan wek "piyanîstên ciwan" jî tevlî konserê bûn û zîrekiya xwe nîşan dan.

Êvara 11ê Mijdarê, bi mebesta 30. salvegera vekirina Dibistana Muzîkê ya Şaredariya Gelsenkirchenê, ji aliyê xwendevanan konserek taybet hat lidarxistin û piyanîstên ciwan berhemên Bethoven, Elton John, Klaus Badelt ve Adam Clayton ligel piyanoyê lêxistin û bi dengê xwe jî stran gotin. Di konsera bi navê "Pop Piano Projekt 3" de 400 mêvan amade bûn ku zêdeyê wan dêbavên xwendevanên wê dibistanê bûn. Keça kurd Zelal Cengizhan du caran hate ser dikê û bi zîrekiya xwe nîşan da ku dikare bibe muzîkvaneke pêşerojê. Zelal Cengizhan di tûra duyem de strana Rihanna ya bi navê Unfaithful û strana Christina Aguilera ya bi navê Hurt ligel piyanoyê got.

Lê Zelal ligel serkeftina muzîkê bi baldarî bûyerên siyasî yên li Kurdistanê diqewimin dişopîne û dixwaze bibe siyasetmedar.

### "Zelalê xwest zarokek kurd a sêwî bîne cem me"

Zelal niha li dibistana navîn (Gymnasium) di pola 7. de dixwîne û ev du sal û nîve ku diçe dibistana muzîkê. Bavê Zelalê Musa Cengizhan got ku keça wî bûyerên siyasî ji nêzîk ve dişopîne û li dibistanê ligel zarokên tirk nîqaş dike. Musa Cengizhan got ew amade ye di her alî de alîkariya keça xwe bike û wiha berdewam kir: "Erdheja Wanê pir bandor li ser Zelalê kiriye, bi xwe alîkarî jî civand. Sala borî dema li Colemergê di bin minîbusekî de bombe teqiya û dêvabên zarokek biçûk jiyana xwe ji dest dan, Zelalê xwest em wê zarokê bînin cem xwe û xwedî lê derkevin. Dilê wê hertim bo gelê Kurd lêdixe û hewldide xwe ku tiştekî bike."

### "Dixwazim li Almanyayê siyasetê bixwînim û herim welat"

Zelal dixwaze perwerda xwe ya muzîkê bidomîne û ligel îngilizî, stranên kurdî jî bistirîne. Zelal pir hezdike ku bi piyanoyê stranên Aynur Dogan û Mikail Aslan bistire. Zelal pir bi Kurdbûna xwe şanaziyê dike û dibêje, "Bavê min Dêrsimî ye, diya min ji Zonguldakê ye û Tirk e, lê ji ber ku ez ji zarokatiya xwe ve gelek caran çûme Dêrsimê, hestên Kurdayetiyê bi min re gelek xurt in." Zelal dixwaze bo gelê Kurd çi ji destê wê were bike û van helwestên xwe di nava hevalên xwe de jî naveşere. Armanca Zelalê ya demdirêj ew e ku li zanîngeheke Almanyayê beşa siyasetê bixwîne û dibêje, "dixwazim wek siyasetmedarekê vegerim Amedê." Zelal ligel almanî, îngilizî, tirkî û zazakî jî dizane.

## Du xortên kurd lokalek nû vedikin

# Ligel coktailên Cuba dew jî heye




**Munchen (Rûdaw) -** Felsefa lokala liberal: Divê mêvan xwe biyanî hîsnekin, bîhna xwe bidin.

Li bajarê Munchenê du xortên kurd ên ji Meletiyê café – bar – restauranek bi navê Libera (bi zimanê spanî azadî) vekirin. Li vir mêvan dikarin nan û xwarina kurdî û ya meksîkanî bi erzanî wexin û bixwin.

Du şirîkên hev Erdal û Oner ev 5 sal in xeyaldikirin ku lokalek kurdî û meksîkanî vekin. Çima ne tenê kurdî û ne tenê meksîkanî? Erdal dibêje, "Armanca me mutfaxek navnetewî bû. Meksika, Kurdistan û Almanya pir durî hev in, lê belê ez bawerdikim em pir jî nêzîkî hev in. Mêvanên lokala me ne tênê rûniştewanên Munchenê ne, kesên navnetewî jî hene."

Navê locale Libera ye ango bi kurdî Azadî ye. Oner dibêje, "Mêvanên ku tên vir divê xwe azad hîsbikin. Piraniya mêvanan êvarê ji kar derdikevin û tên. Ew ne tenê ji bo xwarin u vexwarinê bên, herwiha divê ew hinek bîhna xwe bidin û stresa xwe bavêjin. Cockatil barek me ye pir mezin heye. Mirov dikare li vir cocktailên ji Cuba û Meksîka jî û dew jî vexwe."


Wêne: Rûdaw

Di lokala Libera de mehê du caran di rojên înê û şêmiyê muzîka zindî jî heye. Xwarina erzanî jî ji saet 11:30 heta saet 15:00ê heye. Erdal û Oner dil dikin ku mêvan xwe di libera de biyanî nebînin û bîhna xwe bidin." Li Libera ji xwarinên "Classic Cheesburger"a meksikanî bigire heta tirşik û birinca kurdî gelek cure hene.

Navnîşana libera: Altemesse Platz 8, Munchen/Westend.

# Diyarbakirspor dibe dîrok


Wêne: Rûdaw

## Jiber bi milyonan deyn û qedexeye transferkirina leystikvanan Klûba Diyarbakirsporê ya 43 salî bi girtinê re rûbirû maye


Wêneyek Diyarbakirsporê ji sala 1976ê

**Bawer Çem** Amed

Tîma keskesor Diyarbakirspor ku 43 sal in di qada futbolê de gelek caran serkeftinên baş bi dest xist û di dilê gelê kurd de hêlîna xwe çêkir, niha ber bi têkçûnê ve ye û hindik maye ji Lîga Beyaz (Spî) jî bikeve.

Dîroka Tîma Diyarbakirsporê dîrokeke reş û spî ye. Tîma ku di meha hezîrana sala 1968ê de di bin serokatiya welatperwerê kurd Nejat Cemiloglu vd hate avakirin, piştî salên 1990î kete destê dewletê û di nava xelkê de weke "Tîma JÎTEM"ê hate binavkirin. Li gorî siyasetmedar û pêşengên kurdan dewletê di salên 90î de xwest kurdan bi futbolê bixapîne û ji ber vê yekê jî her tiştê Diyarbakirsporê xiste destê xwe. Gelek caran serokatiya vê tîmê Walîtiya Diyarbekirê kir. Ji Mehmet Agar heta Yeşîl tê gotin ku tiliya gelek kesên ku navên wan di kuştinên kiryar nediyar de cih digrin, di nava vê tîmê de cih girt. Heta sala 2011ê de jî piraniya delegeyên kongreya vê tîmê ji polîsên tirk pêk dihat. Lê di kongreya 2011ê de ev polîs ji delegebûnê hatin avêtin.

Hêjayî gotinê ye ku Diyarbakirspor dema hate avakirin û rengên kesk û sor ji xwe re weke sembol hilbijart, 3-4 salan di Lîga 3'emîn de leyîst. Di vê demê de gelek lîstikvanên baş hatin transferkirin û di sala 1974-79ê de ji Lîga 3'emîn derbasî Lîga 2'emîn bû. Di vê salê de serkeftineke pir baş nîşan da û ji Lîga 2'emîn jî derbasî Lîga 1'emîn bû. Lîga 1'emîn ew çax Super Lîga îro bû. Di navbera 1977-1980ê de di Lîga 1'emîn de 4 heftiyan li ser hev bû rêbera lîgê. Tîma keskesor di vê salê de lîgê di rêza 5'emîn de qedand.

Diyarbakirspor li Tirkiyeyê yekemîn û li cîhanê jî 2'emîn tîm e ku di nava 2 salan de ji Lîga 3'emîn derbasî Lîga 1'emîn bûye. Li cîhanê vê serkeftinê tenê tîma Nottingham Forest a Brîtanyayê nîşan daye. Heta niha li ser Diyarbakirsporê belgefîlm hatine çêkirin û gelek pirtûk hatine nivîsandin. Piştî salên 90î alîgirên PKKê ku dixwestin tîm ji destê dewletê derkeve carna tevlî maçên Diyarbakirsporê dibûn û pankart û dowîzên balkêş derdixistin. Di maçên Diyarbakirsporê de awaza "Hernepêş" êdî bûye awaza sirûda Diyarbakirsporê û di her maçê de bi pîpiklêdanê vê awazê dibêjin.



Diyarbakirspor têk diçe

Lê Diyarbakirspor di navbera salên 2009-2010ê de sezoneke pir xirab derbas kir û ji Lîga Superê ya Tirkiyeyê careke din kete Lîga 1 'emîn. (Lîga 2'emîn a berê) Lê Diyarbakirsporê di vê lîgê de jî nekarî serkeftinek nîşan bide û ji vir jî derbasî Lîga 2'emîn bû. Diyarbakirspor ji sala 1975-1976ê û vir de tu neketibû Lîga 2'emîn.

Tîma Diyarbakirspor niha di Lîga 2'emîn di Koma Spî de cih digre. Di vê lîgê de heta niha tenê 6 pûanan bi dest xistiye û di rêza 13'emîn de cih digre. Ji ber ku tîmên li dû wê tên jî xwedî 6 û 3 pûan in, îhtîmala ku Diyarbakirspor ji vê lîgê jî bikeve pir zêde ye.

### 25 milyon deynê wê heye

Serokê Komeleya Futbolîzên Amator ên Diyarbekirê (DÎPFUD) ku endamên wê hemû lîstikvanên berê yên Diyarbakirsporê ne Ramazan Kahramaner, diyar kir ku rojên pir xirab li pêşiya tîmê ne. Kahramaner, bal kişand ku heta niha 25 milyon deynê Klûba Diyarbakirsporê çêbûye, li ser Diyarbakirsporê qedexeya transferkirina lîstikvanan heye û wiha got: "Ji ber ku deynê gelek futbolîzên biyanî li ser Diyarbakirsporê ye, mimkûn e Diyarbakirsporê bê jêbirin û piştre jî bikeve lîga herî binî." Kahramaner, destnîşan kir ku dermanê başbûna Diyarbakirsporê çêkirina binesaziyeke baş a futbolê ye û heta ku ji bo zarokên Diyarbakirsporê binesaziyeke baş çênebe, wê Diyarbakirspor û klûbên din ên kurdan nikaribin bi ser bikevin.

# Tirkiye naçe Ukraine û Polonyayê

**Koln (Rûdaw) -** Şampiyoniya Futbolê ya Ewropayê ya 2012 wê sala pêşiya me li welatên Ukrayna û Polonyayê bê li dar xistin; şampiyoniya sala 2008ê li Swîsre û Awustûryayê hatibû li dar xistin û di fînalê de Îspanya ligel Almanya leyîst û maçê 1-0 bidestxist û kupayê bir mala xwe. Tirkiye îsal di grûba xwe de bû duyemîn û di maça Play-Offê de rastî Xirvatîstanê hat û di maça yekemîn de ku li Stenbolê hate leyîstin Xirvatîstan 3-0 bi serket û avarajê xiste destê xwe. Maça duyem ku şeva 15ê Mijdarê li Zagrebê hat leyîstin 0-0 bi dawî bû. Li gor vê encamê Tirkiye tevlî Şampiyoniya Ewropayê ya Futbolê ya 2012 nabe.

Wê 16 welat tevlî şampiyoniyê bibin û maç wê li stadên Polonyayê Gdansk, Poznan, Warsowa, Wroclaw û li stadên Ukraynayê Kiev, Donetsk, Dnipropetrovsk û Lvîv bên leyîstin. Welatên ku maçên qualifikasyonê qezenc kirin û raste rast mafê beşdariyê standin ev in: Almanya, Rûsya, Îtalya, Fransa, Hollanda, Yûnanîstan, Îngîltere, Danîmarka, Îspanya û Swêd. Ji van welatan Swêd di grûba xwe de bû welatê herî baş yê duyemîn û welatên din jî di grûbên xwe de bûn sereke. 6 welatên din jî ku di grûbên xwe de bûn duyemîn piştî maçên Play-Offê diyar bûn. Welatên ku piştî Play-Offê bi ser ketin ev in: Hirvatîstan, Îrlanda, Çek û Portekîz.





## Rûdaw amadeyî wênekişandina beşekî bû

# Mahsûn bi rêzefîlmekî behsa firotina keçên kurd dike

Hisên Himmatî

Rêzefîlma “Hayat Devam Ediyor- Jiyan Berdewam e” ya derhêner û stranbêjê bi regeza xwe Kurd, Mahsûn Kirmizigul ku behsa mesela bi zor zewicandin û firotina keçên kurd ên bakûrê Kurdistanê dike, wê di demên nêzîk de li ser ekrana atv bê pêşkêşkirin.

Rûdaw di dema wênekişandina beşeke wê rêzefîlma dramayî de amadebû û hin wêneyên taybetî kişandin. Çavkaniyeke grûba berhemanîna vê rêzefîlma ku ji aliyê hunermend Mahsûn Kirmizigul tê derhênan bo Rûdawê got ku ev rêzefîlm wê 100 xeleke be, herwiha got karên montajkirina beşa destpêkê qediyaye û wê di van nêzîkan de li ser ekrana atv ya tirkî bê pêşkêşkirin.

Senaryoya rêzefîlmê jî ji aliyê Mahsûn Kirmizigul bi xwe hatiye nivîsandin. Ev rêzefîlm çîroka wan keçên ku di temenê zaroktî de tên zewicandin vedibêje ku didin mêrên jor temenê 70 salî. Herwiha behsa wan dayik û bavan jî dike ku li Tirkiyeyê keçên xwe bi zorê û bi pere dizewicînin û difiroşin. Rêzefîlm bêtir behsa keçên kurd ên Bakûrê Kurdistanê dike.

Ev rêzefîlm ji aliyê Rêvebirê Şîrketa Boyut Film a Berhemanîna Fîlman Murat Tokat tê berhemanîn û beşeke wê li taxa Yedî Kule ya navçeya Fatih a bajarê Stenbolê hatiye wênekişandin.

Çavkaniyê amaje da wê yekê jî ku piştî nîşandanê jî rojane wê karê wênekirina dîmenên xelekeyên nû berdewam bike.

Lîstikvanên sereke yên vê rêzefîlmê ev in; Fikret Kuşkan, Arif Erkîn, Meltem Mîroglu, Reina Cebar, Şene Guler, Rozet Hubêş, Serkan Şenalip, Alî Barkîn, Unur Tune, Sera Tokdemîr, Neslîhan Atagul û Çagla Şîmşek.

Mahsûn Kirmizigul ku weke stranbêj navdar bû, di çend salên borî de weke lîstikvan û derhêner jî navdar bû û fîlmê wî yê dawî ser cemaeta Fetullah Gulen bû. Ew herwiha dixwaze fîlmekê derbarê komkujiya Helebce çêke.

## Dilber: Ez taqlîda Deşnê nakim


Wêne: Rûdaw

**Rûdaw -** Dilber Cizîrî red kir ku ew taqlîda stranbêj Deşnê Murad dike. Hunermenda ji bakûrê Kurdistanê Dilber Cizîrî, ku li Almanya dimîne, sê klîbên wê yên stranan hene ku ji aliyê Şîrketa Vîn Pruduksiyon hatine berhemanîn. Dilber red dike ku ew di stran û klîbên xwe de taqlîda stranbêj Deşnê bike û bo Rûdawê got: "Ez taqlîda Deşnê nakim. Ji xwe her kes bi şêweyekî kar dike. Min niha bihîstiye ku dibêjin min kar ligel hunermend Helkewt Zahir jî kiriye, lê ez ligel wî hunermendî nexebitîme."


Wêne: Rûdaw

## Şanda parlementerên murd ligel Barzanî û Talabanî qala çi kirin?

# Li ser çaresernebûna pirsa Kurd bi çekan hemfikir bûn

*Hêj serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî li firokexaneya Stenbolê daneketibû, gava medyayên Tirkiyeyê nivîsandin "Barzanî bo lihevkirina ji bo lêdana PKKê hatiye". Lê helwesta Barzanî û daxuyaniyên wî yên di rûniştinên ligel rojnamevanên Tirkiyeyê de, ku hertim digot çareserî rawestandina şerê çekdarî yê PKKê û êrîşên Tirkiyeyê ye li ser PKKê û rawestandina zindankirina siyasetvanên kurd û destpêkirina gotûbêjan e, û amadekariya xwe ji bo alîkarîkirinê nîşan da, gelek Tirk matmayî hiştin û bêhêvî kirin.*

*Lê li aliyê din ev helwestên Barzanî bûn cihê razîbûna navendên kurdî û PKKê jî. Vê serdanê gelek pirsiyar bi xwe re anîn, nemaze ku Barzanî ligel hevserok û parlementerên Partiya Aşitî û Demokrasiyê (BDP) jî civiya.*

*Heman şanda BDPê heftiya borî serdana Herêma Kurdistanê kir, bo rûniştina ligel serokkomarê Îraqê Celal Talabanî. Şand ji van kesan pêk hatibû: Hevserok û serokê Fraksyona BDPê li Parlementoya Tirkiyeyê Selahettîn Demîrtaş, parlementer û hevseroka BDPê Gultan Kişanak, parlementer û hevserokê Koma Civakên Demokratîk KCDê Ahmet Turk, parlementer û hevseroka KCDê Aysel Tugluk. Tugluk dema borî weke parêzer jî serdana Abdullah Ocalan li zindanê dikir.*

*Ahmet Turk û Aysel Tugluk di hevpeyvîneke ligek Rûdawê de naveroka gotûbêjên xwe ligel Barzanî û Talabanî eşkere kirin.*

Endama Parlementoya Tirkiyeyê û hevseroka KCDê Aysel Tugluk:

## Eger Ocalan bo maleke taybet bê veguhastin, ew biryara bêdengkirina çekan dide

**Rûdaw: Ti projeyeke we hebû hûn ligel Talabanî gotûbêjê li ser bikin?**

**Aysel Tugluk:** Çi birêz Barzanî be, çi jî birêz Talabanî be, ew herdu jî serkirdeyên kurd in, me di dema borî de jî car caran serdana wan kiriye. Armanca serekî ya serdana me ya vê carê ew e ku li Tirkiyeyê û Rojhilata Navîn bûyerên giring li holê ne, bûyer li seranserê deverê diqewimin. Rojhilata Navîn di qonaxeke guherîna bingehînî de derbas dibe. Me di van civînan de gotûbêj li ser van bûyeran, bandora wan li ser Kurdan û ka gelo siberoja siyasî gelê Kurd berbi kîjan alî dibin, kir. Herwiha mijara çareseriya pirsa kurd li Tirkiyeyê gihiştiye xetimînê, divê vê xetimînê ligel serkirdayetiya kurd gotûbêj bikin. Yanî armanca serekî gotûbêjkirina bûyerên Rojhilata Navîn û pêngavên ku em dikarin bi hevbeşî peyrew bikin. Bi kurtî gotûbêj giring bûn.

**We çi peyam ji Barzanî û Talabanî wergirt?**

Ji herdu serkirdeyan, ku em jî bi wan re xwedî yek helwest û bîr û bawerî bûn, tekezî li wê yekê hat kirin ku pêwîst e pirsa kurd bi rêya aşitî û rêyên siyasî bê çareserkirin.

**We ew pêngav gotûbêj kirin ku divê pêşî çi bê kirin, kîjan pêngav bê avêtin û herdu alî li himber hev çi bikin?**

Serkirdeyên kurd daxwazên Kurdan li Tirkiyeyê, nemaze derbarê meseleya otonomî û xwendina bi zimanê dayikê û çespandina mafên gelê Kurd di destûrê de, rewa dibînin. Lê di heman demê de tekez dikin ku divê şêweya siyasî û demokratîk şêweya serekî be bo bidestveanîna van mafan. Herdu birêzan, Barzanî û Talabanî, gotin ku di vê serdemê de şîdet ti sûdê nagihîne gelê Kurd. Lewma bi wan baş bû ku hevrikiya di nava parlementoyê de weke bingeh bê girtin. Di heman demê de tekez kirin ku di wê dema ku em vê şêweyê rast dibînin, wisa fêm nekin ku em ji we re dibêjin herin xwe radestî hinekên din bikin.

**Li Tirkiyeyê, di civîna we ligel birêz Barzanî de, wî daxwaz ji we kir ku hûn ji PKKê bixwazin agirbestê ragihîne?**

Na. Birêz Barzanî got 'li gor min baştir e ku ji dêvla çek hûn siyasetê bikin. Li parlementoyê bo mafên rewa yên gelê Kurd şer bikin, pêwîst e hûn bi semax bin û nefesa we dirêj be.' Wî zêdetir qala rewşê bi giştî kir, me jî derencama wê kuştinê ji çi hatiye jê re ron kir. Me ji birêz Barzanî re got ku PKK tenê bo bergirîkirina xwe çekan bikar tîne, wî jî tekez kir ku di sedsala 21ê de maf bi hêza çekan nayên bidestxistin. Birêz Barzanî mikur tê ku PKK çekan bo bergirîkirina xwe bikar tîne, lê dîsa jî daxwaz kir çek bên bêdengkirin. Bêguman em ji herkesî zêdetir dixwazin çek bên bêdengkirin, ji ber ku ev 30 sal in şer heye, lawên Kurd û ciwanên Tirkiyeyê jiyana xwe ji dest didin. Di baweriya me de, divê ev mesele dûr ji çekan û bi rêya diyalog û lihevkirinê bê çareserkirin. Bêguman em şîdetê na, lê rêya aşitiyê rast dibînin, lê belê ji ber ku em di orta bûyeran de ne em rastiya vê pirsê baştir dibînin. Em hemû dizanin ku birêz Ocalan rêberê gelê Kurd û rêberê gerîllan e, lê ev 3 meh û 15 roj in ti nûçeyeke wî nayê zanîn û hevdîtinên pêre hatine rawestandin. Dîsa çekên kîmyewî li ser gerîlla tên tecrûbekirin. Kurdên ku dixwazin siyasetê bikin dixin zindanan. Ti cûreyên çekan di destê wan kesan de nînin û di nava partiyeke siyasî ya bi molet de siyasetê dikin, lê rê nadin vê yekê jî. Di rewşeke bi vî rengî de çawa em dikarin ji PKKê re bêjin agirbestê ragihîne. Weke carên berê heman rewş dubare dibe. Ji ber ku di bin sîbera wê zexta ku tê meşandin gotina me bê giringî dimîne û ti kes li me guhdar nake. Em siyasetmedar in û dibêjin xwezî çek bêdeng bin, em li ser mirina mirovan siyasetê nakin, lê eger hikûmet hinek pêngavan bavêje, weke mînak operasyonên leşkerî rawestîne, girtiyên siyasî azad bike, ji ber ku girtina van kesan bêyî ti bingeheke yasayî ye, eger rewşa zindana Ocalan baştir bike û qonaxa lihevkirinê destpê bike, wê çaxê piştrast im ku PKK wê çekan bêdeng bike. PKK ne rêxistineke dildara çekan e, bi neçarî û tenê bo bergirîkirina xwe çekan bikar tîne.

### Çareseriya pirsa Kurd li Tirkiyeyê gihiştiye xetimînê

**We di nivîseke xwe ya vê dawiyê de gotiye eger dewlet Ocalan ji Îmralî veguhêze maleke taybet, Ocalan wê daxwaz ji PKKê bike ku dest ji çekan berde, vêga jî heman nerîna we heye?**

Rewşa Ocalan bo Kurdan û PKKê pir giring e. Êdî ti kes wê rewşa ku Ocalan tê de ye qebûl

## Parlementoya Mêrdînê û hevserokê KCDê Ahmet Turk:

# Agirbest ne bi destê me ye, lê em hewl didin rê li ber xweş bikin


Wêne: Rûdaw

**Rûdaw: Pirsa Kurd li Bakur di qonaxeke xetimî de derbas dibe, bo vekirina dergehê çareseriyê pêngavên we wê çi bin?**

**Ahmet Turk:** Em baş dizanin ku pirsa kurd bi rêya siyaset û diyalogê çareser dibe, bi şer û çekan çareser nabe, lê daku pirs çareser bibe pêwîst e diyalog dûalî be. Îro kes nikare ji Kurdan re bêje hûn bêdeng bin, Kurd êdî vê yekê qebûl nakin. Lewra em berî hertiştî dibêjin mafên gelê Kurd çi ne? Hûn ji bo mafên Kurdan çi dibêjin? Gava mafên Kurdan nas bikin, wê çaxê em dikarin ji bo aşitî û çareseriyê karekî pir giring bikin. Gava pêşî bo vê yekê destpêkirina danûstandineke berfireh e di nava Kurdan de, ku tê de behsa mafên Kurdan bê kirin. Gava qala mafên Kurdan hat kirin, wê demê Kurd bo aşitiyê amade ne qurbaniyên zêde bidin. Lê eger mafên Kurdan neyên naskirin, ev pir zehmet e pêk bê, ji ber ku ked û qurbaniya salan ji bo bidestveanîna van mafan bû. Li Tirkiyeyê îro gotûbêjek heye, li Rojhilata Navîn guherînên berfireh li holê ne. Rast e, Kurd ne xwedî dewlet in, lê aktorekî giring in li deverê. Eger hewl bidin ku Kurdan bêdeng bikin û mafên wan li ber çav negirin, aramî û demokrasî li Rojhilata Navîn çênabin.

**Dibêjin bi serdana birêz Barzanî bo Tirkiyeyê û bi hatina we bo Herêma Kurdistanê gotûbêj li ser projeyekî tê kirin. Li gor vê yekê dewlet îzoleyê li ser Ocalan radike û PKK jî agirbestê îlan dike. Tiştekî bi vî rengî heye û hûn piştgiriya hewldaneke bi vî rengî dikin?**

Agirbest ne bi destê me ye, lê em hewl didin rê li ber xweş bikin. Ev jî wiha tê kirin: dewlet gavan bo çareserkirina pirsa Kurd bavêje, yan rê li ber xweş bike. Ji bo amadekirina vê atmosfêrê jî kar dikin û alîkariyê dikin, lê çek ne di destê me de ne. Rast e, em aşitîxwaz in lê pêwîst e dewlet û ew kesên ku şer dikin gotûbêjan ligel hev bikin, lê gava mesele dibe siyasî û behsa mafê Kurdan tê kirin, em jî dikarin pêkutiyê li ser dîtin û bîr û baweriyên xwe bikin, di heman demê de em dikarin bo bêdengkirina çekan kar bikin, ger niyetpakiyê bibînin. Eger gotûbêjên dewletê û Ocalan destpê bikin, bawer dikim Ocalan bo aşitî û bêdengkirina çekan gavên ciddî davêje.

**Gava li gotara Erdogan û berfirehbûna gefan tê mêzandin, ti hêviyek bi nermbûn û ragirtina şer nayê dîtin. Raya we çi ye?**

Ti hewldaneke Erdogan bo aşitiyê li holê tune, çanda demokratîk li cem Erdogan tune, bi salan e dubare dikin û dibêjin Erdogan hinek tiştan dibêje, lê ne xwediyê çanda demokratîk e. Yanî daku Erdogan tiştên ku dibêje bicih bîne, pêwîst e pêşî mafên gelê Kurd di lojîk û derûna xwe de qebûl bike, eger vê yekê neke çareserî pir dijwar e. Biraderên me li Başûr digotin Erdogan demokratxwaz e û dixwaze pirsa kurd çareser bike. Erdogan îro dibêje Kurd birayên me ne, lê dotira rojê dibêje yek millet li Tirkiyeyê heye. Yanî di siyaseta Erdogan de cihê çanda demokratîk nebûye, lê têkoşîna Kurdan roj bi roj dergehên nûtir vedike. Beriya ku Îngilîstan û Îrlanda kom bibin, Îngilîstanê digot em hinek peyvan bo Îrlandiyan dibêjin û wan bêdeng dikin, lê gava diyalogê destpê kir Îngilîstanê got divê rêya çareseriyê ji wan re diyar bikin, ev jî bi rêya misogerkirina mafên wan bicih tê. Bi heman awayî eger îro Tirkiye bi tiştên din jî birame, rojekê tê, ew digihin wê baweriyê ku bêyî misogerkirina mafên Kurdan ev pirs çareser nabe.

**Beriya ku Îngilîstan û Îrlanda kom bibin, Îngilîstanê digot em hinek peyvan bo Îrlandiyan dibêjin û wan bêdeng dikin, lê gava diyalogê destpê kir Îngilîstanê got divê rêya çareseriyê ji wan re diyar bikin, ev jî bi rêya misogerkirina mafên wan bicih tê. Bi heman awayî eger îro Tirkiye bi tiştên din jî birame, rojekê tê, ew digihin wê baweriyê ku bêyî misogerkirina mafên Kurdan ev pirs çareser nabe.**

**Ew biraderên Başûrî yên ku we behsa wan kir, gihiştine wê yekê ku hûn derbarê Erdogan de dibêjin?**

Kurd gihane wê baweriyê ku bi mejiyekî hevbeş zêdetir dikarin mafên xwe bidestve bîne. Di heman demê de ev mejiyê hevpar zûtir me digihîne aşitiyê. Diyaloga di navbera Kurdan de zêdetir dibe û Kurd roj bi roj zêdetir bi hevre siyasetê dikin.

**Li jêr gefên Gul bo Sûriyê çi veşartiye?**

Sûriyê di qonaxeke guherîna bingehînî de derbas dibe. Ji herkesî zêdetir Amerîka dixwaze ev guherîn çêbe. Ji ber ku Amerîka daxwaza vê guherînê dike û Tirkiye jî piştgiriya guherînê li Sûriyê dike, lê bi şertê ku Kurd li Sûriyê mafên xwe bidest nexin. Ev naveroka wê projeyê ye ku li ser Sûriyê birêve diçe. Tirkiyeyê berî çend mehan digot Esed birayê me ye, lê îro dijminatiya wî dike. Ji ber çi ev siyaset hat guherandin? Bêguman daku Kurd li Sûriyê negihîjin mafên xwe.

**Konferansa neteweyî tê kirin?**

Bi piştrastî dibêjim vê carê konferansa neteweyî tê kirin. Eger heya dawiya îsal neyê kirin, herî dereng heya Sibata sala bê konferans tê kirin.

**Hêlên giştî yên konferansê çi dibin, çi bandora wê li ser pirsa kurd li Bakur dibe?**

Kurd di vê konferansê de li ser guherînan gotûbêjan dikin û rê û rêçikan bona parastina berjewendiyên xwe diyar dikin.

**Hûn ligel birêz Barzanî û birêz Talabanî kom bûn, gelo we ti ramaneke hevbeş zelal kir?**

Bêguman gotûbêj tiştelî berdewam e, ti ramanek jî di şev û rojekê de û bi rûniştinekê û duduyan zelal nabe. Lê tiştê tekez dikim û bawer dikim ku me bi destve aniye, ew e ku roj li pey rojê peyrewkirina siyasetê zêdetir nêzîkî rêya rastî dibe, em hemû rastiya siyasetê baştir dibînin û zêdetir di peyrewkirina siyaseteke hevbeş de nêzîkî hev dibin.

nake. 11 sal in li zindana Îmralî ye û divê rewşa wî bê baştirkirin. Weke destpêk bawer dikim guhastina Ocalan bo maleke taybet baş e û cihê qebûlkirinê ye. Herî kêm pêwîst e astengiyên pêwendîkirina wî bi derve re bên rakirin. Ocalan kilîta pirsa Kurd e û akterekî giring e, lewma divê şert û mercên karkirinê jê re bên misogerkirin. Ji bo ku Ocalan rola xwe ya aşitîxwaz bilîze û bikare biryarên bibandor derbarê PKKê de bide, divê gotûbêjê ligel PKKê bike. Eger wiha bibe, bawer dikim çek wê bên bêdengkirin. Li gor min, mala taybet û hevdem jî ligel destpêkirina qonaxa lihevkirinê wisa li birêz Ocalan dikin ku biryara bêdengkirina çekan bide. Ev xwendina min ya şexsî ye.

**Li gor we serkirdeyên kurd li Herêma Kurdistanê wê vê daxwazê pêşkêşî Tirkiyeyê bikin?**

Erê, piştrast im ji vê yekê. Wan ji me re gotin ku daxwaz ji hikûmeta Tirkiyeyê kirine ku rewşa Ocalan baştir bike. Nemaze birêz Talabanî ji berpirsên Tirkiyeyê re gotiye ku baştirkirina rewşa zindana Ocalan pêngaveke serekî ye bona bidawîanîna şerê çekdarî.

**Berpirsên tirk dibên ji niha şûnde em nahêlin Ocalan parêzerên xwe bibîne û tenê dikare xwişk û birayên xwe bibîne. Eger ev bê kirin, gelo ev yasayî ye?**

Li gor mafê xweparastinê ye, ji ber ku hê birêz Ocalan di çend meseleyên din de tê dadgehkirin, lewma li gor yasaya Tirkiyeyê mafê wî heye ku parêzerên xwe bibîne, lê belê îro Ocalan kirine rehîne, dewlet bi îzolekirina Ocalan dixwaze kertan û hêza xwe zêdetir bike. Dixwaze bi vê pêngavê şertên xwe li ser PKKê ferz bike. Dibêje eger vê yekê nekin, emê jî serokê we îzole bikin. Ev jî lîstikeke xeter e ku dewlet dike. Eger îzolebûn li ser Ocalan berdewam be, yan zêdetir bibe, PKK bi ragehandina agirbestê nafikire û berbi aliyê bêdengkirina çekan jî naçe. Tundtirkirina îzoleya Ocalan tê wateya dirêjkirina şer. Ev bi ti awayî xizmeta aşitî, çareserî û biratiyê nake. Hêvîdar im Komara Tirkiyeyê vê rêya xeter peyrew neke. Ji ber ku îzolekirina Ocalan tê wateya ferzkirina îzoleyê li ser gelê Kurd.

**Eger ev îzolebûn berdewam be, hûnê dozê bibin Dadgeha Mafên Mirovan a Ewropayê?**

Her dem ev rê hatiye meşandin û tê meşandin, ji ber ku ev nakok e ligel Belgenameya Mafên Mirovan a Ewropayê û Komîteya Nehiştina Îşkenceyê. Koma parêzerên Ocalan berdewam vê rêyê dimeşînin û zextan dixin ser Yeyê, daku li bingehên xwe xwedî derkeve. Yanî emê herin Dadgeha Mafên Mirovan a Ewropayê, lê nizanim ti encamek bidestve tê yan na. Çarenivîs û siberoja Ocalan girêdayî ye bi hevrikiya gelê Kurd ve. Bawer nakim, nemaze di vê qonaxê de, Ewropa yan welatekî din zêde bi sûd bin.

**Serokkomarê Tirkiyeyê Abdullah Gul gefan li Sûriyê dike ku bi 'karta Kurd' nelîze. Ev çi ye û hûn çawa şîrove dikin?**

Komara Tirkiyeyê ne li Sûriyê û ne li Îranê rastiya Kurdan qebûl nake, bi neçarî li rastiya Kurdan li Îraqê mikur hat. Tirkiye naxwaze Kurd nasname û mafên xwe bidestve bînin. Bûyerên Sûriyê, Tirkiyeyê dûdil dikin. Dibe ku hilweşandina rêjîma Sûriyê ji Kurdan re bibe sedemê çêbûna qewareyekê. Ev Tirkiyeyê ditirsîne. Di dema borî de gef li Kurdên başûr dikirin, îro jî bi heman awayî gefan li Kurdên Sûriyê dikin.

**Hûn helwesta PYDê li Sûriyê çawa dinirxînin, ku ji partiyên kurdî yên Rojava dûr ketiye?**

Îro di dema civîna me ligel birêz Talabanî de 3 partiyên Kurdên Sûriyê amade bûn. Ligel wan jî me tekez kir ku Kurd di qonaxekê de derbas dibin ku siberoja xwe diyar dikin. Weke qonax pir giring e, divê Kurd di vê qonaxê de bi zîrekî tevbigerin, û siyaseteke rast peyrew bikin û wiha dikarin gelek tiştan bidestve bînin, eger şaş jî bibin wê gelek tiştan jî dest bidin. Ev bo Kurdên Sûriyê jî heman tişt e, lewma divê hemû partiyên siyasî bi hevre derbarê berjewendiya gelê Kurd di çi de ye gotûbêjê bikin û destnîşan bikin. Bêyî mejî û stratejiyeke hevbeş ev pêk nayê. Dîsa tekez dikim PYD weke partiyên din ên Sûriyê di asteke wekhev de ye, divê hewl nede xwe ferz bike. Pêwîst e ligel wan partiyan bi hevre kar bike. Pêwîst e tiştekî din nexe pêşiya berjewendiya xelkê. Ev meseleyeke çarenivîsaz e. Hemû Kurd daxwaza otonomiyê li Sûriyê dikin, bawer dikim di rojên bê de partiyên kurdî yên Rojava zêdetir nêzîkî hev dibin.

*Hevpeyvîn: Hêmin Xoşnaw*






Wêne: Rûdaw

# Li Spanyayê xwaringehên Doner-Kebabê bûne navendên çanda Kurdî

**Ew piranî ji Rojava û Bakurê Kurdistanê hatine û li Spanyayê bicîh bûne. Lê li vî welatî jî ew bi Kurdbûna xwe şanaziyê dikin û vê yekê di navên kargehên xwe de jî nîşan didin**

**Zinar Ala** Spanya

Hebûna revenda kurdî li Spanyayê xwedî temenkî kin e. Ji sala 2000î û vir de hejmara Kurdan li vî welatî roj bi roj zêdetir dibe, piraniya wan jî ji bakur û rojavayê Kurdistanê ne û di xwaringehên Doner-Kebaban de dixebitin. Ew bûne xwedî fabrîka û fîrmeyên mezin, weke Istanbul û Nemrût ku li gelek bajarên spanî belav bûne. Gelek ji wan bi rêya navên xwaringehan dixwazin balê bikşînin ser Kurdan, wekî navên Kurdistan, Zagros, Kurd, Kobanî, Dêrsim, Newroz, Siwar û hwd. Kurdên Spanyayê her wisa hewl didin bi rêya mûzîka xwe, wêneyên gund û bajarên xwe, wêneyên cil û şahiyên kurdan balê bikşnin ser hebûna netewa kurd.

### "Tûrîst ji me ecêb dimînin..."

Li paytext Madrîdê me berê xwe da xwaringeha Kurdistanê, xwaringeha ku wek balyozxaneya Kurdistanê tê naskirin, ji ber ku ew li navenda Madrîdê ye û herdem bixêrhatina Kurdan dike. Digel ku xwediyê xwaringehê spanî ye, lê herdem Kurd têde dixebitin û bi rêve dibin. Em li wir rastî Dara hatin, yek ji wan xortên ku ji bakurê Afrîkayê derbasî xaka Spanyayê bûne. Hemû jî ji rojavayê Kurdistanê, ji bajarê Kobanî ne. Di hundirê xwaringehê de ala Kurdistanê li ser dîwar hatiye danîn û li ser bi spanî "Azadî ji Kurdistanê" hatiye nivîsandin. Li ser karta xwarinê jî nexşeya Kurdistanê hatiye danîn. Li Spanyayê ji ber nebûna dezgeh û komeleyên ku behsa Kurdistanê bikin, gelek kes Kurdan nas nakin. Dara ji Rûdawê re vê yekê wiha şîrove dike: "Mixabin li vir gelek kes Kurdan nas nake, hem spanî hem jî hemwelatiyê Amerîka Latînî. Li vî welatî tenê Baskî me baş nas dikin. Her wiha gelek tûrîst li vir nan dixwin û em ji wan re behsa gelê kurd dikin û nexşeya Kurdistanê pêşî wan dikin. Gelekên wan ecêb dimînin û dipirsin: Ji bo çi hûn 40 mîlyon in û heya niha jî hûn nebûn xwedî dewlet?"

Dara û hevalên xwe Doner-kebabê weke xwarineke kurdî pêşkêş dikin, di menûya wan ya xwarinê de salata kurdî û çayê kurdî jî nivîsandine.




Wêne: Rûdaw

> **Gelek kes li wateya navê xwaringehê dipirsin û ka em ji kîjan welatî ne, em jî ji wan re behsa Kurdan dikim**

### "Sultan Istanbul" dibe Mêrdîn

Li bajarê Ciudad Real, yê ku dikeve herêma La Mançayê, me serdana "Sultan Istanbul" kir. Zekî Acarê ji Nisêbînê vê xwaringehê bi rêve dibe. Ev 8 sal in ew li Spanyayê dijî û li vir fêrî karê çêkirina Kebaban bûye. Zekî salekê çûbû Almanayayê jî û li wir fêrî gelek tiştan bûbû di karê çêkirina Donerê de, "li wir şaştiyên ku min li Spanyayê dikir min naskirin, min ezmûneke baş wergirt. Niha jî ev bû mehek ku em li vir kar dikin û karê me baş diçe."

Navê xwaringehê Kurdên vî bajarî aciz kirin, nemaze ku di bin navê xwaringehê de "metbexa tirkî" hatiye nivîsandin. Zekî derbarê vê rexneyê de ji Rûdawê re got: "Sultan Istanbul navekî bazirganî ye, ev xwarin bêtir bi navê Tirkan hatiye naskirin, ti kes Kurdan nas nake", lê Zekî tekez dike her kesê ku tê wir, ew ji wan re dibêje ku ew Kurd e û ji wan re behsa Kurdan dike. Zekî bi rûkenî li hemberî vê rexneyê dibêje: "Tişt nabe, ezê di pêşerojê de nav bikim Mêrdîn an jî Mezopotamya".

### "Partiyên kurdî bi awayekî lojîstîk hevkariya me nakin"

Di dekorasyona xwaringeha "Sultan Istanbul" de bêtir bajarê Stenbolê û kelepûra Rojhilata Navîn bi giştî tê nîşandan. "Me dekora xwe ji Stenbolê aniye, mixabin min wêneyên bajarên Kurdistanê peyda nekirine. Lê dixwazim ku xwendevanên Rûdawê vê yekê zanibin ku partiyên me alîkariya me nakin ku em tiştên kurdî li xwaringeha xwe bi cih bikin. Ka bila poster û wêneyên Kurdistanê bînin, da ku em li xwaringehê nîşan bikin, lê ew tenê dizanin di dema kampanya topkirina pereyan de serdana me bikin. Ne rojnameyekê, ne wêneyekî jî bi xwe re tînin", Zêkî rexneyan li rêxistinên kurdî dike. Zekî radibe û çend broşûrên bi zimanê spanî ku behsa Nemrûdê, Amedê û Mêrdînê dikin nîşanî me dike û dibêje ku balyozxaneya tirkan ji wî re şandine. "Ti kes bi awayekî lojîstîk hevkariya me nake ku em bikaribin Kurdistanê bi xelkê bidin naskirin", Zekî bi êş dibêje.

Di heman bajarê ku "Sultan Istanbul" lê ye, xwaringeheke din ya kebabê bi navê Medya heye ku Helîme û hevserê xwe Hemû bi rêve dibin. Helîme û Hemû ji Efrînê ne û ev bûn deh sal ku karê Donerê dikin. Wan dîwarên xwaringehê bi wêneyên xwezayî yên herêma Kurdaxê xemlandine. "Gelek kes li wateya navê xwaringehê dipirsin û ka em ji kîjan welatî ne, em jî ji wan re behsa Kurdan dikim", Hemû vedibêje. Helîme jî wiha didomîne: "Mûzîk û wêne bala wan dikîşnin, ez ji wan re dibêjim ev mûzîka Kurdan e, ev jî wêneyên şahiyên me, cilên me, gund û bajarên me ne"

Digel ku xwediyê xwaringehê spanî ye, lê herdem Kurd têde dixebitin û bi rêve dibin.

Di hundirê xwaringehê de ala Kurdistanê li ser dîwar hatiye danîn û li ser bi spanî "Azadî ji Kurdistanê" hatiye nivîsandin.

# Cezayê namûsê hê jî pozjêkirin e

Alîkarê Rektorê Zanîngeha Dicleyê Prof. Aytekin Sir diyar kir ku li bajarên Kurdan tundiya li hemberî jinan gelekî zêde ye. Li gorî Prof. Sir jinên ku rastê tecawizê tên, an jî bi mêrên biyanî re diaxivin, hê jî pozên wan tê jêkirin û porên wan tê kurkirin. Prof. Sir anî ziman, ji bo ku tundî li ser jinan kêm bibe, divê li Tirkiyeyê perwerdehiya mecbûrî bibe 11 sal.

Di nava Kurdan de gotinên cezakirinê yên weke "Ez ê rabim pozê te jê bikim", "Ez ê te dax bikim", "Ez ê porê te kur bikim" gelek aşîna ne. Li ser cenazeyên miriyan jinên kurd dema zêmar dibêjin tim gotina "Wey li min porkurê" bi kar tînin. Porkurkirin weke rêbaza cezakirina ji bo namûsê hîn jî tê bikaranîn. Alîkarê Rektora Zanîngeha Dîcleyê Prof. Dr. Aytekîn Sir derbarê kuştinên namûsê û tundiya li ser jinan de agahiyên balkêş dan.



Di nav axaftinên pîrejin û pîremêrên Kurdan de mirov rastî gotinên "porkurê" û "heqê te pozjêkirin e" tê. Lê ew gotin ne tenê gotegot in, lê hîn jî weke awayekî "pakkirina namûsê" tên pêkanîn

**Li Tirkiyeyê tundiya li hemberî jinan çawa ye? Di nava Tirkiyeyê de rewşa bajarên Kurdan çawa ye?**

Mixabin tundiya li hemberî jinan li her derê dinyayê heye. Cihên ku herî kêm tundî li hemberî jinan heye jî, dîsa ji sedî 30 ne kêmtir e. Li Tirkiyeyê ev rêje hinekî din zêde ye. Rêje derdikeve sedî 40-45. Ji bo ku li Tirkiyeyê mekanîzmaya ku jin xwe biparezin tune ye, hejmar zêde ye. Tundiya li hemberî jinan her dem hebû. Hin lêkolîner dibêjin "Ji ber hormonên mêraniyê mêr tundiyê bi kar tînin. Lê ez di eynî fikrê de nîn im. Kes nikare bêje "Ji ber ku hormonên min ên mêraniyê hene, ez ê biçim yekî bikujim." Ev tiştekî bê mantiq e. We rewşa bajarên Kurdan pirsî bû, ez dikarim bêjim ku li bajarên Kurdan tundiya li hemberî jinan gelek zêde ye.

**Çima?**

Çimkî jin naxwînin. An jî jinan nadin xwendin. Jina ku nexwendiye wê xwe çawa biparêze û biçe kû derê? Ti mekanîzmaya wê ya ku xwe biparêze tune ye. Ev 23 sal in ez li vir im. Kuştinên namûsê di nava tundiya li hemberî jinan de tiştê herî giran e. Ma tundiyên din tune ne? Helbet heye, hem jî gelek zêde ye. Ji ber ku di kuştinên namûsê de jin tên kuştin, ew zêde bal dikşîne. Lê di tundiyên din de çavên jinan tên reş û şînkirin, serê wê tê şikandin, lê ev kes dijî. Ji ber ku tundiya fizîkî li kêleka kuştinên namûsê sivik dimîne, bala me nakişîne. Li bajarên Kurdan tundiya ku bav, mêr û bira li hemberî jinan bi kar tîne gelek zêde ye.

**Saziyên jinan her tim dibêjin 'çima li bajarên Kurdan dema jinek tê kuştin dibe kuştina namûsê, lê li bajarên din ên Tirkiyeyê dema tê kuştin, dibe kuştinên evînê? Ev binavkirin li hemberî Kurdan cudakarî ye', hûn jî wisa difikirin?**

Niha di navbera her du bûyeran de ferq heye. Em bêjin li rojavayê Tirkiyeyê jinek dev ji mêrê xwe berda û çû. Piştre doz vekir û ji mêrê xwe cuda bû. Ev mêr dikeve pey jinikê, cihê ku jinik dimîne tespît dike û li jinikê dixe an jî dikuje. Lê li van deran bûyer wisa naqewime. Li vir mirov tên ba hev. Yanî 'Meclisa Malbatê' dicive û ji bo ku jin bê kuştin biryar digire. Ji ber vê yekê kuştinên van deran kuştinên kesekî nîn e. Yanî kesek plana kuştinê nake û naçe nakuje. Meclisa Malbatê dibêje 'ev jin reviya û namûsa me qirêj kir, divê bê kuştin!' û kesekî ji bo ku jinê bikuje peywirdar dike. Eger jin zewicî be, mêrê wê wê dikuje, eger nezewicî be birayê wê an jî kesekî din wê dikuje. Kuştinên namûsê ji aliyê 4-5 kesan ve tê plankirin. Ji ber vê yeke, kuştinên namûsê "kuştinên plankirî ne". Kuştinên evînê, an jî kuştinên hesûdiyê li her derê dinyayê hene, bi taybetî jî li welatên Deryaya Spî zêde ne. Kuştinên ku li ser navê namûsê tên kirin, ji bo tore û ji bo parastina exlaqa civakê tên kirin.

**Di nava van "Meclisên Malbatê" de jin jî hene. Ma jin nikarin li hemberî vê biryarê derkevin?**

Mixabin na. Ev jin jî jixwe giredayî vê civakê ne. Di hîn lêkolînan de me dîtiye ku biryarên ku jin digirin, nezî biryarên mêran in. Divê mirov weke "jin aliyê jinan digrin" nefikire. Herî dawî jin jî di nava civakê de mezin dibin. Ev zarokên ku jinan dikujin jî ji aliyê van jinan ve tên mezinkirin. Yanî weke rêzefîlman, jin nabêje "heta tu min nekujî, nikarî keça min, xwişka min bikujî!" Tiştekî wisa tune ye.

**Li ser kuştin û tundiya li hemberî jinan lêkolînên wê zêde ne. Em dikarin bêjin êdî hin qeyde bi cih bûne. Mînak jina ku bi mêrên biyanî re diaxive bi kuştinê tê cezakirin?**

Na! Em nikarin wisa bêjin. Lê mînak jina ku li gorî civakê kinc li xwe nake, an jî bi mêrekî re biaxive, heps dikin. Lê mertebeya wê hepsê li gorî nezikbûn û dûrbûna mêr diguhere. Bi evîndarê xwe re axiviye, ji dibistanê bi mêrekî re axiviye, an jî di nava civakê de bi mêrekî re destê hev girtine? Ev tişt awayê hepiskirinê diguherîne. Ji rojekê bigrin heta heftiyekê ev jin tê hepiskirin. Li gorî malbatê sûcê jinikê girantir be, dikarin di nava axur de jî hepis bikin. Nan nedin, an jî hindik nan bidinê. Eger malbat pir zêde aciz be, dikare porê wê kur bike an jî pozê wê jêbike.

## "Xwendina 11 salî şert e"

**Çima poz tê jêkirin, an ji por tê kurkirin?**

Ji bo teşhîrkirina wê jinikê ye, peyamê didin civakê, dixwazin bejin "Wê ev sûç kir, me jî ev ceza da wê". Yanî dixwazin bêjin "Me namûsa xwe paqij kir"

**Jinên ku li vir dijîn tundiya li hemberî xwe normal dibînin?**

Belê, li gorî xebatên ku me kiriye, ev tişt gelek zelal derketiye holê. Dibêje "eger min tiştekî xelet kir, mêrê min dikarê li min bixe". Jixwe tundiya li hemberî xwe normal nebîne jî tiştekî ku bike tune ye. Ma wê biçe kû derê? Eger ji malê bireve, wê bê kuştin. Wê biçe sitargehê, divê hemû tekiliyên xwe û malbatê qut bike. Wê çaxê jî nikare zarokên xwe bibîne, anjî nikare zarokên xwe bigre ba xwe.

**Ji bo ku tundiya li hemberî jinan biqede hûn çi pêşniyar dikin?**

Em diaxivin, diaxivin lê di çareserkirina pirsgirêkê de dixitimin. Pêşniyara min belkî klasîk bê dîtin, lê li gorî min divê jin bixwînin. Xwendin an jî perwerdekirina mêran mixabin di vê pirsgirêkê de encamên baş nade. Mêrên perwerdekirî jî li jinên xwe dixin. Divê li Tirkiyeyê perwerdehiya lîseyê (dibistana amadehî) mecbûrî be. Yanî keç heta 18 saliya xwe divê li dibistanê bin. Çimkî li gorî lêkolînan jinên ku zû zewicîne yan jî tên zewicandin, zêdetir tundiyê dibînin. Çimkî ev jin ti tiştekî nizanin. Li mala xezûrê xwe weke karkeran dixebitin. Dema rastê tundiyê hatin jî ti derfeta wan a gilîkirinê û serîlêdana saziyên jinan jî tune ye.

*Hevpeyvîn: Bawer Çem*


Wêne: Rûdaw

**Prof. Aytekin Sir: Hin lêkolîner dibêjin 'ji ber hormonên mêraniyê mêr tundiyê bi kar tînin.' Lê ez di eynî fikrê de nîn im. Kes nikare bêje 'ji ber ku hormonên min ên mêraniyê hene, ez ê biçim yekî bikujim.' Ev tiştekî bê mantiq e.**

# Gelo azadî bo Sûriyê tê wateya azadî bo Kurdan?

Edîb Ebdulmecîd*

Piştî çendîn dehsalan ji çewisandin û paşguhxistinê li Sûriyê, Kurd di xebata xwe ya dijî zordestiya rêjîma Esed û siyaseta Erebkirinê ya partiya Baasê de berdewam in.

Di destpêka salên 60î de şoreşa kurd bi serkirdayetiya mele Mistefa Barzanî li dijî hikûmeta Îraqê destpê kir, vê yekê jî ew tirs di nava desthilatdarên Sûriyê de çêkir ku dibe ku tiştekî wiha li Sûriyê jî çêbibe. Di encamê de pîlaneke dijminkarî ji aliyê zabitê dewletê Mihemed Teleb Hîlal di kitêbekê de hat pêşniyarkirin. Hîlal serokê beşê siyasî li Hesekê bû, di wê demê de armanca pîlana wî guherandina demografyaya deverên kurdî li Sûriyê bû û hilweşandina Partiya Demokrata Kurd bû ku di salên 1957-1958ê de bi serkirdayetiya Nûredîn Zaza û Osman Sebrî hatibû damezirandin.

Kitêba Hîlal bi navnîşana `xwendineke siyasî, etnîkî û civakî ya wîlayeta Hesekê` weke yekemîn pîlana sîstematîk tê hejmartin bo serkutkirin û bêmafhiştina Kurdên Sûriyê. Piştî çapkirina vê kitêbê, piraniya siyasetên rejîma Sûriyê bi awayekî rasterast yan sergirtî li ser acendaya Hîlal hatine avakirin.

Wîlayeta Cezîrê ku cihê jiyana piraniya Kurdên Sûriyê bû, bi pêgeha xwe ya girîng ya jeopolîtîkî û çandiniyê tê naskirin. Lewra jî rejîma Sûriyê hewl daye vê devera girîng bi tevahî kontrol bike û rê li ber hêviya Kurdan bigire bo çêkirina dewleta Kurdistanê ya hevgirtî ku parçeyên Kurdistanê li Tirkiye, Îraq û Îranê lixwe bigire. Kitêba Hîlal ji 6 beşan pêk hatiye û bi çandina tovê gumanê li ser bingeh û eslê neteweya kurd destpê dike û bi vî awayî Kurdan dide naskirin ku "grubeke tevlîhev in ji çend élan ku ji Îran û Ermenistanê hatine." Hîlal dibêje ku Kurdan "ola pak a Îslamê bo armancên xwe yên neteweyî bikar anîne." Ew herwiha bizava neteweyî ya kurdî dişibîne bizava Ziyonîzmê û dibêje ku tu cudahî di navbera Kurd û Îsrailiyan de nîne û Kurd daxwaza dewleteke serbixwe dikin. Hîlal dibêje jî ku Kurd û Îsrail weke hev gef in li ser cîhana Erebî.

Jê wêdetir jî, Hîlal tekeziyê li ser pêdiviya dawîanîna hêvî û pirsa Kurd dike û dibêje: "Kurd weke segên har li wan hatiye, niha dema wê yekê ye dawî li ewte ewta wan a azarbexş bê anîn."

Çend salên kêm piştî belavbûna pirtûka Hîlal, rejîma Sûriyê dest bi kampînekê li deverên kurdî kir bi mebesta guherandina demografyaya wan deveran, ev jî bi rêya guherandina navên kurdî yên dîrokî û danîna navên Erebî.

Hikûmeta Nazim El-Qudsî di sala 1962yê de biryar da serjimêriyeke nû bo Kurdên Sûriyê (wîlayeta Cezîrê) çêke û di encamê de nêzîka 400 hezar Kurdan ji mafê hevwelatîbûna Sûriyê hatin mahrûmkirin.

Piştre hikûmeta Qudsî ragehand kesên di serjimêriyê de beşdar nebûne ne welatiyên Sûriyê ne lê koçber in û ji welatên derdorê hatine. Piştî ji ser kar rakirina Qudsî ji aliyê Hafiz Esed di sala 1972yê de, heman pîlana çewisandin û binpêkirinê bo dema 40 salên din li himber Kurdan hat peyrewkirin.

Di akamê de, zindan hatin tijekirin bi çalakvanên kurd û endamên partiyên dijber. Di sala 2000î de, yanî piştî mirina Hafiz Esed, kurê wî Beşar Esed hefsarê desthilatê girte destê xwe. Beşar ji aliyê heman serkirde û hevalên Baasî hat dorgirêdan ku ligel bavê wî bûn û wî jî heman nêrîn û pîlan li himber Kurdan meşand.

Beşar Esed di destpêkê de hinek derfet bo azadiya ra û nêrînê peyde kir, bi dayina mafê xwerêkxistinê bo grubên kultûrî û siyasî û çalakvanên Kurdên Sûriyê jî bi sûdwergirtin ji vê derfetê dest bi xwerêkxistinê kirin, lê piştî derbasbûna çend mehan, hemû çalakvan hatin girtin.

Di Adara 2004ê de piştî xwepêşandaneke cemawerî ji aliyê Kurdên Qamişlo, hêzên ewlehiyê yên Sûriyê dest bi serkutkirin û komkujiya xwepêşanderên kurd kirin û dehan kes ji wan kuştin û nêzîka 3 hezar kes jî ji wan girtin. Tu yek ji endamên wan hêzan qet nehatin dadgehkirin û ji bilî terorkirina kesayetiyan, dehên serbazên kurd di artêşa Sûriyê de hatin îşkencekirin û 37 serbaz di şert û mercên nediyar de hatin kuştin.

Vêga jî ji wextê ku xwepêşandanên demokratîxwaz dijî rejîma Esed destpê kirine, Kurdên Sûriyê jî ligel hevwelatiyên Ereb xwepêşandanan dikin bi hêviya dawîanîna zordestiyê li Sûriyê. Rejîma Esed hewldaneke zêde daye bo bêalîkirina Kurdan, lê hewldanên wî bêsûd bûn. Çalakvanên kurd di rêza pêşî ya xebata dijî rêjîma Baasê rawestiyan û şoreşa berdewam a Sûriyê derxistiye ku Kurd heya çi astekê amade ne qurbaniyan bidin bo guherandina Sûriyê berbi dewleteke demokratîk.

Terorkirina serokê Şepêla pêşeroja kurd û dijberê Sûrî Mişel Temo, baştirîn mînaka wî rûhê şoreşgêrî ye ku di nav Kurdên Sûriyê de heye. Vê jî tirs xist dilê rêjîmê ku xwepêşandanên Kurdan zêde bibin.

Civata niştimanî ya Sûriyê vê dawiyê weke pêngavekê bo komkirina opozisyona Sûriyê di bin yek sîwanê de hat damezrandin, lê civat li bizaveke Erebî diçe û heya vêga nûnertiya Kurdan tê de nehatiye çespandin.

Hinek ji partiyên kurdî yên opozisyonê dudil bûn ji beşdarbûna di civînên opozisyonê de û hinek grubên Erebî hewl dan nehêlin kesayetiyên kurd tevî civatê bibin. Çalakvan û opozisyona Erebî Kurdan weke hevbeşê rastî di bizava guherînê de nabînin û dibêjin Kurd lid û çespandina hinek acendayên din in.

Stratejiya siyasî ya Tirkiyeyê li himber Sûriyê derdixe ku Kurd divê çaverêyeke dijwar bikin di rojên bê de. Hemû bizav û hewldanên opozisyona Sûriyê li binî sîbera Tirkiyeyê ne û hikûmeta Enqere piştgiriya hewldanên opozisyonê dike bo hilweşandina rejîma Esed.

Gefa ciddî û tirsa çewisandina Kurdan careke din dibe ku dîsa di serdema piştî Esed de rastî Kurdan bê. Bizava siyasî ya kurdî di roja 26ê Cotmehê de konferansa neteweyî li Sûriyê girêda. Kurd li Sûriyê ligel du dijminan rûbirû tên: ji alîyekî, rejîma Esed ku bo dema çend dehsalan e Kurd serkut kirine û ji alîyekî din jî opozisyona Erebî Sûriyê ku pîlanan dijî Kurdan dihûne, ev jî bi rêya pêkanîna peymanekê ligel Tirkiyeyê daku kontrola pirsa kurd bike di qonaxa piştî Esed de.

**Nivîskar rojnamevanekî Kurdê Rojavayê Kurdistanê ye û li Hollandayê dijî.*

# Bizava kesk û pirsgirêka kurd li Îranê

Dr. Esed Reşîdî

Bizava kesk li Îranê, yek ji giringtirîn tevgerên civakî yên ji 30 salî û virde ye ku sîstem û pêkhateyên siyasî yên rejîma Komara Îslamî ya Îranê heya keviya standina rewatiya siyasî ya rejîmê bir, her di wê gopîtkê de jî ragirt û bû aferîdeyek û rêbazeke piralî ku civaka bêdeng û girtî ya Îranê hejand û krîza rewatiya wîlayeta feqîh li himber ezmûneke nû danî. Gava di aliyê siyasî de lê diramin, sedemê serekî yê derketin û beşdarbûna bereya siyasî ya piralî ya vê bizava azadîxwaz e ku berhema zêdeyî 30 salan e ji serkutkirina sîstematîk ya fermanrewayên Îranê, eşkere û ron dibe.

Emanuel Kant amaje dide rastiyeke girîng û hestiyar, gava dinivîse "Azadî pêkhênera berfirehiyeke mezin û kêrhatî ye bo demokrasiyê."

Pêşxistin û geşkirina azadiyê, weke bingeh û naveroka her tevgereke pêşkeftî ya civakî, dijwar e ku pêkhateyeke demokratîk li qadeke aram bê holê û bê damezrandin û bo vê mebestê jî, çand cihekî bilind û girîng di vê proseyê de werdigire û ev rêbaz bê ezmûneke dîrokî ku ji taybetmendiyên civakeke diyarkirî bingeh negirtibe, nayê wênekirin û hemû hewldanek bo guherîn û pêşveçûnê armanca xwe pêk nayîne û careke din sitemkarî û zordarî tê berhemanîn.

Nasnameya civakên rojhilatî bi gotina Marx di "şêweya berhemanîna Asyayî" de bingeh digire û herwiha, Carl Wotfugle di teoriya `zêdegaviya rojhilatî` de bingeh û paşxaneya dîrokî ya vê diyaroka negatîf destnîşan û pênase dike.

Ev nêrînên kûr û zanistî îspat kirine ku daxwaz û armancên gelên Îranê ji bizava meşrûtiyetê (1907) heya niha negihan encamekê û bi gotineke din, tevahiya tevgerên azadîxwaz û demokratîk, ji şoreşa meşrûtiyetê heya bizava xwecihkirina petrolê (1953), şoreşa Îranê (1997) heya tevgera kesk, hewldan û têkoşîna civaka pirnetewe ya Îranê ye bo damezrandin û pêkanîna azadî û serweriya neteweyî li Îranê ye.

Ji van jî girîngtir mak e û tuxmê paşketî yê rojhilatê bi liberçavnegirtin û kêmkirina buha û nirxê têgeha takperestî (individualism) bingeh girtiye û ligel eqlaniyet (Rationality) û (Materialism) ê sê regezên modernbûnê pêk aniye. Ev diyarok xwezaya wê biguhere pêkhateyên civakî-çandî û mêkanîzma geşbûna pêwendiyên civak û takekes lawaz kirine û buhaya pêwîst nedayê û bi gotina Hegel `Rojhilat bi wê hebûnê û di pileya herî nizim de ya fetilînoka mirovatiyê de dibe serî ku ev şaristanî ji rola takekesê azad xafil bûye."

Di warê siyasî de û bi liberçavgirtina têgeha desthilatê û pêwendiyên wê ligel civakê, du bingehên berçav û nazik têne holê, yanî pêkhateya dewletê û berpirsiya civakê li himber pirs û kêşeyên girîng bi wateya, texlît û cûreyên çîn û tiwêje û bandora wan li ser hev.

Thomas Springer reh û koka derketina nerazîbûnên piralî yên civakê bi vî rengî vedibêje "Di her civakekê de gava fermandar lêdixebitin desthilatekê ku ji aliyê xelkê wernegirtibin bidestve bînin, di rastiyê de, peymana di navbera xwe û xelkê de binpê dikin û di vê rewşê de xelk jî dikarin prensîbên vê peymanê hilweşînin û li dijî derkevin."

Bizava kurd û tevgera kesk bi dirêjiya van sî û çend salên borî, rastî û dîqeta lêkolînên Springer îspat kirine.

Lê Kurdan weke xwediyên ezmûneke dîrokî bi aqilmendiyeke hêjayî pesindanê di proseya nîşandana dengê nerazîbûnê û tevgera dijî rejîma desthilatê ya Îranê de heya cihekî beşdar bûne û nîşan dane ku ne bêhelwest û bêalî ne.

Rêbertiya tevgera kesk heya vêga stratejiyeke ron û diyarkirî nemaze di warê pêwendiyên navdewletî de zelal nekiriye û helwesteke wêrek li ser siyaseta derve ya Îranê, yanî çawaniya pêwendiyên aborî û siyasî ligel Amerîka û tevahiya welatên pîşesazî û pêşketî yê rojava û siyaseta atomî û herwiha desttêwerdana siyasî û serbazî ya Tehranê di welatên cîran de û çekdarkirina grubên deverê diyar nekirine. Li ser asta siyaseta navxweyî, derbarê kêşeyeke kûr ya civakê girêdayî destûr û yasaya bingehî ya Îranê û di gopîtka hemuyan de "diyaroka" walîtiya feqîh, helwesteke sist û lawaz girtiye û bi tekezkirina hevoka bêwate û bê naverok "vegera berbi serdema zêrîn a Xumeynî" ku car caran ji zarê rêberên vê tevgerê tê bihîstin, hilgir û rengvedana dîtin û nêrînên paşmakên baskê reformîst e ku heya berî û piştî hilbijartinên gera 10'mîn a serokkomariyê li Îranê li holê bû û berovajî sloganên xwepêşanderên bajar û gundên mezin û biçûkên Îranê ye ku dixwazin sîstema walîtiya feqîh li Îranê birûxe û nemîne.

Ji alîkî din ve sedemê serekî yê xwedûrgirtina ji beşdarîkirina hemû aliyên Kurd di rêbaza bizava kesk de, ji xênî serkutkirin û şîdeta hêzên rêjîmê li Kurdistanê, nediyariya nêrîn û baweriyên tevgera kesek bi xwe ye li ser kêşe û pirsa neteweyî di Îranê de, girêka kor e û zehmet e ku heya niha hewldan û meylên vebûnê ji aliyê rêberên bizava kesk nehatine dîtin.

Bi kurtî ger rejîma Îranê ji nişkave li jêr zexta kevinperestiya xwe têk here û şepêleke ne aram bingehên civakê bilerizîne û rêber yan rêberên nû li Tehranê derkevin, bê li berçavgirtina bizava kurd û bê dabînkirina daxwazên Kurdan, aramiya herdemî û ewlehiya neteweyî di naverokê de bêwate û pirsa neteweyî li Îranê bêyî çareserî dimîne.

## Haya we ji dermanên dijî mikroban hebe

# Li Çînê milyonek zarok rastî kerrbûnê anîne



Salane ji ber bikaranîna dermanan li cîhanê çend kes dimirin, herwiha ji sedî 40ê wan kesan jî dimirin ku dermanên dijî mîkroban yanî antîbiyotîk bi şaşîtî bikar anîne.

Di dema hatina demsala sermayê de xelk rastî nexweşiya persîv û êşa qirikê tên, nemaze zarok, piştî ji berxwe dermanên dijî bakterya bikar tînin bê ku şêwira doktoran bikin.

Li Amerîkayê, raçêteyên ku bi awayekî ne pêdivî didin nexweşan û dermanên dijî mîkroban di wan de hene, salane zêdeyî 10 milyonan e.

Li Çînê, ji ber bikaranîna xirab ya dermanên dijî bakteriyan milyonek zarok rastî kerrbûnê hatine.

Li Almanyayê jî ji ber nazikiya bikaranîna dermanên dijî mîkroban çend doktor bi hevre biryar didin ka gelo pêdiviya kesê nexweş bi wan dermanan heye yan na. Lêkolerên Amerîka li 65 hezar raçêteyên nexweşxaneyên zarokan lêkolîn kirine û ji wan re kifş bû ku ji her 5 zarokan, dermanên dijî mîkroban ji wan re tên nivîsandin, ku piraniya wan rastî kulbûna pişikan yan êşa qirikê hatine.

Herwiha ¼ kesên ku dermanên dijî mîkroban ji wan re tê nivîsandin pêdiviya wan bi wan dermanan tune, weke kesên bi bihnçikandinê dikevin yan bi zikmê dikevin.

Doktor hişyariyê didin bikaranîna ne pêdiviya dermanên dijî bakteriyan û amaje didin nemana bergiriya laşê zarokan dijî wan dermanan.

Li Herêma Kurdistanê tu çavnêrî li ser bikaranîna dermanên dijî bakteriyan tune û li hemû dermanxaneyan peyde dibin, bi piranî jî zêdeyî pêwîst didin xelkê û bi awayekî çewt tên bikaranîn.

## Xaçepirs

**Çeperast:** 1- Edalet, mafdarî, dadgehî – Serserî, zugurd, eware. 2- Şêwe, şikil, cûre – Destnîşana kesê duyemîn – Mirov pê bi dûr re diaxive, hacetek axavtinê. 3- Hestîyê devê mirov, pê xwarin tê cûtin – Hemdemî, serdemî – Ji ber, êdî, ji bo ku. 4- Welatê Grekîyan, Yewnanîstan – Bangêr, kevirê ku banê xanîyên axî tê rastkirin. 5- Dendik, dendikên nava fêkîyan – Bide, bide min, bîne (berepaş). 6- Bersiva bangkirinê, hîna – Mesqere, kilê bi rûn, dermanek kozmetîkê. 7- Cendek, neaş, laş (berepaş) – Henek, laqirdî. 8- Nîşan, keramet – Kes, şexs. 9- Navekî zilaman, dilxwaz – Kesên ji Amedê. 10- Ji vir û pê de, ji vir û şûn de – Ehmeqî, bêaqilî, serkerî (berepaş).

**Serejêr:** 1- Mehkeme, dad – Navekî jinan. 2- Nezera çavan, temaşe – Nîvxav, tam nekeliyayî, bi taybet ji bo hêkan tê gotin (berepaş). 3- Bêjinga mezin (berepaş) – Bi qîm, dil xweş. 4- Barack Obama serokê wê ye (berepaş). 5- Di sosyolojîyê de kêmnetewe, grûp. 6- Notayek Muzîkê – Hestîyê nerm ê lingê heywanan – Kesên ji Tataristanê. 7- Navekî zilaman, yekrêz (berepaş) – Notayek muzîkê. 8- Bergeh, meqam, pile (berepaş) – Şewq û ruhnîya herî xurt û bi xeter, çeka şewqê. 9- Navekî jinan – Ast, bergeh, derece. 10- Navekî zilaman – Xeter, rexne. 11- Cûre, şikil, boyax, awa. 12- Notayek muzîkê (berepaş). 13- Rûn, tewaş. 14- Yan, yan jî. 15- Notayek muzîkê. 16- Êdî, ji ber vê, ji vir û pê de.



### Bersivên hejmara 121



Rojbûn an jî şahiya te ye û
tu jî dixwazî wêneyê xwe li vir bibînî?
Ji me re bişîn: info@rudaw.eu



**Îkram ji ber xweşiya xwe hatiye Almanyayê**

Îkram Serbest Qasim ji bajarê Zaxo ye. Zaxo dikeve başurê Kurdistanê. Îkram nexweş e û ji bo tedawîkirinê van rojan hatiye Almanyayê. Îkram dibêje "ez xwendekarê pola şeşê me, li dibistana Botan ya li bajarê Zaxoyê dixwînim. Bêguman di jiyanê de hinek xwestekên herkesî hene, ez jî dixwazim dema mezin bûm bi rengê herî baş xizmeta millet û welatê xwe bikim. Lê xwesteka min a herî mezin ewe ku zarokên Kurdan li herçar parçeyên Kurdistanê bi xweşî û bextewarî bijîn"
Em jî ji bo Îkram tenduristiyek baş dixwazin û hêvîdarin ku Îkram di zûtirîn demê de baş bibe û bizîvire Zaxoyê, daku dibistana xwe bidomîne.

# Agirê laşê mirov



Dema mirov nexweş dikeve, agirê laşê mirov çêdibe, laş germ dibe û bi zêdebûna agir mirov diwestîe. Mirov dikare bi termometreyeka taybet agirê laş bipîve. Eger termometre ji 37,5 pile bêtir nîşan bide, wê demê agirê mirov heye. Dema ku agirê laş hebe, ya herî baş ew e ku mirov xwe newestîne, daku laşê mirov tevaya enerjiya xwe ji bo têkoşîna li dijî nexweşiyê bikarbîne û mirov zû tendurust bibe.




## Xaçepirsan Xicikan





Hejmaran li gora rêzbendiya wan bigihîne hev û wêneyê ku derdikeve birengîne.

Amedekirina rûpela zarokan: Sevda Şafîk

## Werdeka jîr



Li gundekî cotkarek hebû, gelek ajal (heywan) û balindeyên wî hebûn. Kûçikekî cotkar jî hebû ku ajalên wî diparastin û nedihişt ku rovî û gur wan bixwin. Dem derbas bû, rojekê kûçikê cotkar mir. Paşî mirina kûçik, her roj roviyek dihat û mirîşkek an jî werdekek dixwar û diçû. Di nava werdekan de yeke gelekî jîr hebû. Rojekê wê werdeka jîr bangî tevaya mirîşk û werdekan kir û ji wan re got: "Werin, em li ber deriyê malа xwe çalek mezin bikolin." Wan çal kola û hinek qamîş danîn ser devê çalê, daku rovî nebîne. Êvarê werdeka jîr çû ber derî, li ser devê çalê sekinî û weke hercar rovî jî hat. Bêyî bizane ku çal li pêşiya wî hatiye kolandin, rovî xwe avêt werdekê û qamîşê bin lingê rovî çûn xwarê û rovî ket çalê û heya di çalê de mir êdî nema karîbû derkeve. Bi vî awayî werdeka jîr xwe û hevalên xwe tev ji mirinê rizgar kirin.